



# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Great Britain
9 771869 104000 51

Deutschland, Österreich, Nederland, Belgique, France 1,50 Euro | Schweiz 2,70 CHF | England 1,40 GBP | Sverige 21,00 SEK | Danmark 15,00 DKK

Hejmar/Nr. 24 | 15. Kanûn/Dezember 2009 | www.rudaw.net






*Niviskar Yıldız Çakar* - (*Wêne: Rûdaw*)



Şaredarê Sêrtê Selîm Sadak:

## Kurd ji 'kart kurtê' hatin heta TRT-6'ê!



*Selîm Sadak*

''Sabotaja dijî vebûna demokratîk"

# Tirkiye bi girtina DTP'ê ber li pêşeroja xwe jî girt!



*Komeke nijadperest li Stenbolê bi çekan êrîşê kurdan kir; ligel wêne û dîmenên zelal ti kes jî wan nehat girtin.* (*Wêne: Diha*)

Dadgeha Destûra Tirkiyeyê piştî ku roja 11'ê Kanûnê biryara girtina DTP'ê da, li Tirkiye û Kurdistanê aloziya siyasî derket. Dadgeha Destûrê dawî li mebûstiya Serokê DTP'ê Ahmet Türk û parlamena Amedê Aysel Tuğluk jî anî û li ser 37 rêvebirên DTP'ê jî qedexeya siyasî danî. DTP'ê piştî biryara dadgehê daxuyand ku wê li meclisa Tirk vekişin.

Bê ku atmosfera aloza ya rewşa zindana Serokê PKK'ê Abdullah Öcalan û êrişa HPG'ê ya bajarê Tokatê belav bibe, Tirkiye û Kurdistan vê carê bi girtina DTP'ê rabû ser lingan.

Li aliyê din piştî ku biryara girtina DTP'ê hat ragehandin, li Kurdistan û Tirkiye û Ewrûpayê kurd daketin kolanan û biryara dadgeha Tirk şermezar kirin. Li gelek deveran di navbera xwepişender û polisan de pevçûn derketin. Çalakiyên kurdan li gelek deveran her ku diçe geştir dibe û di navbera hêzên dewletê û kurdan de şer û pevçûn dikomin.

Girtina DTP'ê li cîhanê jî olan da bû sedemê helwestên cuda. Serokê demê yê Sweda Yekîtiya Ewrûpayê bang li Tirkiyeyê kir ku di demeke nêz de yasayên xwe li gor kriterên Ewrûpayê buguhurîne. YE pêşketinên li Tirkiyeyê ji nêz ve dişopîne.

Hevseroka Komisyona Parlamena Hevbeş a Tirkiye-YE'yê Helene Flautre, girtina DTP'ê bi gotinên wek "sabotaja dijî vebûna demokratîk" nirxand.

Berdevkê Wezareta Karê Derve yê Amerîkayê Ian Kelly di derbarê girtina DTP'ê de got ku, "Ev biryar, karê Tirkiyeyê yê navxwe ye û em li ser vê yekê şiroveyê rast nabinin" û berdewam kir: "Divê Tirkiye azadiya siyasetê bide hemû hemwelatiyên xwe."

Li aliyê din qedexeya siyasî ya 5 salan ku li ser Leyla Zana jî hat dayin ku ew ne endama DTP'ê ye di çapemeniya Ewrûpî de bû cihê ecebmayînê. Rojnameyên sereke biryara dadgeha Tirk wek "skandal" binav kirin.

Li gor daxuyaniya Serokê Dadgeha Destûrê Haşim Kılıç, DTP jiber çalakiyên xwe û têkiliya bi PKK'ê re bûye navendeke li dijî yekitiya yekgirtina dewlet û netewê, hatiye girtin. 11 dadwerên dadgehê bi yekdengî biryara girtina DTP'ê dan. DTP li dijî biryarê wê seri li Dadgeha Mafê Mirovan ya Ewrûpayê bide. Rayedarên DTP'ê herwiha ragihandin ku ew li dijî vê biryarê xwe ji parlamentoyê vedikişin.

Koma Civakên Kurdistanê (KCK) girtina DTP'ê wek "komkujî" bi nav kir û piştigiriya helwesta DTP'ê ya vekişîna ji parlamentoyê kir. Çendin parlamenterên DTP'ê jî gotin ku ew niha gel û rewşenbiran guhdar dikin û dibe ku di parlamentoyê de grûbek nû avabikin.

Berdevkê Hikumeta Herêma Kurdistanê, Kawe Mehmûd:

## Obama soz daye Barzanî



Berdevkê Hikûmeta Herêma Kurdistanê Kawe Mehmûd Ji Rûdawê re daxuyand ku ji ber lihevnekirina kurd û ereban li ser qanûna hilbijartinên Parlamena Îraqê, Barack Obama telefoni Mesûd Barzanî kiriye û çendin soz dane wî. Li aliyê din hinek aliyên siyasî dibejin ku Obama zexta qebûlkirina qanûna hilbijartinê li Barzanî kiriye û ji ber vê yekê ji kurd mecbûrî gavpaşavêtinê mane. Berdevkê hikûmetê ev iddayan red kir û got 'kurdan di yasaya nû de zerar nekirine.'

## Şahciwana cîhanê



*Kaiane Aldorino*

Şahciwana sala 2009'an hat hilbijartin. Di pêşbirka şahciwaniya isal de ku li Komara Başûrê Afriqayê hat lidarxistin, ciwana ji Gibraltar Kaiane Aldorino bi ser ket.

Îsal ji 112 welatên cîhanê keçên ciwan tevli pêşbirkê bûn. Piştî ku diyar bû Kaiane Aldorino ya 22 salî wek şahciwana cîhanê hatiye hilbijartin, wê bi giriyên bexteyarî spasiya jûriyê kir. Taca wê ji ali ciwana sala borî ya Rûsyayê ve hat teqdimkirin. Di pêşbirkê de ciwana Meksîkayê bû duyem û ya Komara Başûrê Afriqayê ji bû sêyem. Şahciwaniya cîhanê ji sala 1951'an ve tê lidarxistin. Heta niha keçên Venezûela û Hindistanê 5 caran di vê pêşbirkê de biserketine. Pêşbirka sala bê ji wê ji Viyetmanê bê li dar xisitin.



(Wêne: Rûdaw)

### 20 meleyên kurd li Misrê ne

# Li Ezherê hucreya meleyên kurd careke din vebû

**ARÎ OSMAN**

**Hewler (Rûdaw)** - Bi rêya beşdarbûna kursa pêşxistina xutbeyên Înê, 20 meleyên kurd hînî şêwazekî nû yê xutbeyan bûn. Bi hevkariya Hevbenda Cîhanî ya Derçûyên Ezherê, Wezareta Ewqafa Herêma Kurdistanê 20 mele şandin Qahîre. Kurs 70 rojan dewam dike û di 30'ê Cotmehê de destpêkiriye. Şêwirmend û Berpirsê Ragihandina Olî li Wezareta Ewqafê, Selam Kerîm Sêdan ji Rûdawê re ragihand ku ev pêngav ji ba bilindkirina asta zanistiya meleyên Kurdistanê ye.

Beşdarên kursê, pesnê vê pêngavê dan ku wê tesîreke mezin li şêwazê xutbedayîna wan bike. Rûdawê ji beşdaran ligel Mele Celal Xeylanî li Qahîre têkilî danî. Mele Celal ku gelek pesnê bilindiya asta kûrsê da û pendan kir û got ew niha hîn dibin: "Meleyên kurd bi henaseyeke tundûtûj xutbeyên xwe pêşkêş dikin. Lê xutbebêjên Qahîre, gelek bi hêminî xutbeyên xwe pêşkêş dikin û xwe ji dengbilindiya hawariyan dûrdixin. Ew bi rûyekî xweş xutbeyên xwe dixwînin. Niha ji me re diyardibe ku di gelek tiştên xutbedayînê de, em şaş in."

Li gor programa ku ji wan re hatiye danîn, meleyên kurd wê her hefte nimêja înê li cihekî bidin kirin: "Heta niha ez tevlî şeş xutbeyên meleyên mizgeftên Qahîre bûme. Min nedît yek ji wan meleyan xwe aciz bike yan gefan bike. Ew hemû bi axaftineke xweş hemwelatiyan haydardikin. Ew ne behsa Necwa Kerem dikin, ne Cemşîd û ne Muîn."

Yek ji wan mizgeftên ku wê grûba meleyan ziyaretkirin e, Mizgefta Sultan Hesen e ku mezintirîn mizgefta Qahîre ye. Di rojên înê de bêtirî 5 hezar kes lê amadedibin, ew yekem mizgeft e ku ji aliyê Barak Obama ve hatiye ziyaretkirin. Bi boneya seredana meleyên Kurd, meleyê Mizgefta Sultan Hesen, di 20 xulekên xutbeya xwe de behsa doza kurdî kir.

Zanîngeha Ezher, yek ji wan cihan e ku ji aliyê wan meleyan ve hatibû ziyaretkirin û têde hucreyên çendîn welatan hene, herweha hucreya kurdan jî heye ku taybet e bo qutabî û feqiyên kurd. Ew hucre di serdema Eyûbiyan, ji aliyê Zeyneb Xatûn a neviya Selaheddîn Eyûbî ve hatiye dirustkirin. Lê li ser daxwaza Tirkiyê, kucreya kurdî ya li Zanîngeha Ezher li serdema Serokê Misrê Enwer Sadat hatibû daxistin. Di ziyareta vê carê ya meleyên kurd bi Şêxê Ezherê careke din ew hucre dan vekirin.

Di dema serdanê de, yek ji wan meleyên kurd çû destê Şêxê Ezherê Seyid Tentawî. Mele Celal Xeylanî di vî warî wiha dibêje: "Li Misrê çendîn zanayên mezin hene, mirov li hemû Kurdistanê bigere yekî wiha nabîne. Lewra destmaçkirina wan tiştekî asayî ye û weke rêzgirtin ji wan re hat kirin."

# Li Kurdistanê 15 hezar zarokên karker hene



*Ji sedemê xizaniyê zarok mecbûr dimînin ku ji bo malbata xwe bixebitin.* (Wêne: Rûdaw)

**Hewlêr (Rûdaw)** – Li gor daneyên Rêxistina Parastina Zarokan li Herêma Kurdistanê 14 hezar û 878 zarok dixebitin û gelek ji wan naçin dibistanê. Ev hejmar li Hewlêrê 8.246, li Silêmanî 4.067 û li Dihokê 2.565 e. Ji vê hêjmarê jî 6.473 zarok xwendevan in û 1.617 zarok jî ji bo xebatê dest ji dibistanê berdane.

Her li gor wê îstatîstîkê ji dawiya sala borî heta meha 10'an ya sala 2009'an, malbatên 560 zarokên li ser caddeyan hatiye tespîtkirin, ji wan 200 ji ber hejarî zarokên xwe didin karkirin. Niha ev malbat ji Rêxistina Parastina Zarokên Kurdistanê mehane 50-150 hezar dînar werdigirin, da ku ji bo zarokên xwe rênekin kar û ew bişînin dibistanê. Herwiha 360 malbat jî ji ber nizmiya asta rewşenbîrî zarokên xwe rêdikin kar. Navenda Polîsên Nûgihayî sozname ji dayik û bavê wan wergirtîne ku zarokên xwe rênekin kar.

Serpereştê Sekreteriya Parastina Zarokan yê Rêxistina Zarokparêzên Kurdistanê Ferhad Osman Xidir wiha dibêje: "Feqîrî ne sedema bingehîn a karkirina zaroka ye, belkî nizimbûna asta rewşenbîriya malbatan sedema bingehîn be. Ji ber ku tenê ji sedî 30'ê sedema xebita zarokan feqîrî ye, ji sedî 70'ê jî bi sedema nizmbûna asta rewşenbîrî ya malbatê ye."

Li aliyê din rayedarên Wezareta Perwerdê dibêjin heta niha di destê wan de tu raporek di derabarê zarokên ku qet neçûbin dibistanê nîne. Şîretkarê qanûnî yê wezareta perwerdê wiha dibêje: "Eger em bizanibin malbatek ji ber hejariyê zarokên xwe narêke dibistanê, emê belgeyekê ji wezîrê perwerdê re rêkin û da alîkariyê bide wan. Eger pejirand, emê jî alîkariyê bidin."

Rêvebiriya Polîsên Nûgihiştî yên Hewlêrê ji despêka sala 2009'an heta niha soznameya 360 malbatan dagirtiye ku zarokên xwe ji bo kar rênekin kolanan. Fermandarê vê rêvebiriyê Nureddîn Qadir ji Rûdawê re wiha dibêje: "Ji dawiya sala 2008'an heta niha, bi alîkariya Rêxistina Zarokparêzên Kurdistanê me 560 malbat diyarkirîne ku zarokên wan li ser caddeyan kar dikin. Ji wan 200 bi sedema feqîrî û bêderfetiyê, lê 360 xêzan jî bi sedema asta nizim a rewşenbîriyê zarokên xwe rêdikin ser caddeyan. Yên ku sozname wergirtîn, carekî din dûbare nakin."

# "Vê nandanê li Urdunê jî veke"

*"Wezîrê Karêhundir ê Urdûnê hat û got eger tu bê û li Urdûnê xwaringehek bi vî awayî vekî, ezê alîkariya te bikim."*

**ARÎ OSMAN**

**Hewlêr (Rûdaw)** – Li Hewlerê jineke kurd nandaneke folklorîk vekir. Viyan Emîn Elî bi vekirina 'Nandana Venerî Kurdewarî' daxwaza kesên dixwestin ku zikêa xwe ji xwarina kurdewarî têr bikin, bicîh anî. Di nandana Viyan de hestekî folklorî bi rêxistina nandan, mehfûr, kelepûr û xwarina navî çêdibe. Viyan Emîn Elî ku 44 salî ye her bi xwe xwediyê nandana venerî ya kurdewariye. Ew hem li karê hesabkirinê û pêşwaziya mêvanên û hem jî çavderiya midfaxê dike. Li ser maseya Viyan menûya xwarinê hatiye danîn ku ji 16 cûrên xwarinê pêk tê. Ew jî xwarinên wek; kifteyên sor, maş, plawmaş, nîsk, birinca bi sirke, qûraw, dolmeyên bi genim, birinc, merege û teşrîbin. Ev xwarin hemû li rojên heftiyê hatîne belavkirin û di rojekê de tenê 3 cûrê xwarinan amade dikin.

Viyan Emîn ji Rûdawê re dibêje, ev demek dirêj e bîr li damezirandina xwaringehek bi tevayî kurdewarî dike. Piştî westanekî zêde, wê meha borî xewna xwe bi cîh aniye û xwaringehek bi navê 'Nandanî Venerî Kurdewarî' veke: "Min gelek pere razandiye û xerckiriye, ji ber ku beşek zêde ya kelopûrên nav de folklora kurdewariye û min wan bi zahmetî bidest xistine. Ji bo mînak; min gêreyek a bêderan bi 2.400 dolaran kiriye. Ji derveyê vê hinek kelepûr bi diyarî ji min re hatîne."

Sîstema pêşkêşkirina xwarinê li Nandana Venerî Kurdewarî ji xwaringehên din cûda ye. Ew jî li ser rojên heftiyê hatiye parvekirin. Di her rojekê de sê cûrê xwarinên kurdewarî tê amadekirin. Di rojên heftiyê de çend xwarin jî tên dûbarekirin. Viyan vê bernamê jî wiha eşkere dike: "Xwarinên kurdewarî ji xwarinên biyanî cûda ne. Eger xwarinên biyanî rojekê jî bimînin tama wê tê gûhertin, lê xwarinên kurdewarî eger rojekê zêdetir ji ser ve derbas bû tama wê xirab dibe. Ji ber vê em di rojekê de 3 cûrê xwarin amade dikîn. Herwiha em li gor daxwazên xelkê xwarinê amade dikîn."

Viyan li ber deriyê nandana xwe derfetek ji bo nivîsîna bîranîna mêvanan daniye, ji bo nêrîn û hestên xwe beramberî nandan û xwarinên wê diyar bikin: "Heta niha gelek kurd û kesên biyanî hatîne vêderê. Piştî çûnê hestên xwe beramberî xwarinê diyarkirîne û bi karên me gelek ecêbmayî mane. Di van çend rojên borî de Wezîrê Navxweyî yê Urdûnê hat xwaringeha me û gelek destxweşî li me kir. Ji min re got ez dixwazim hûn bên Urdûnê, xwaringehek bi vî awayî vekin û ezê bi hemû awayî alîkariya we bikim."



*Viyan Emîn Elî li Hewlêrê, li 'Nandana Venerî Kurdewarî'* (Wêne: Rûdaw)

Viyan ji bilî amadekirina xwarinan, serkêşiya nandanê jî dike. Lê hemû kar ji bo Viyanê hêsan in: "Rêvebirina cihekî wisa karek zor e, lê ez fêrî karkirinê bûme. Her min ji zarokatî ve dixwest karekî meydanî bikim."



*Barack Obama li gel şanda kurdan li Bexdayê: Barack Obama, Felah Mistefa, Mesûd Barzanî, Nêçîrvan Barzanî, Roj Nûrî Şawês (ji aliyê çepê)* *(Wêne: Rûdaw)*

## Berdevkê Hikumeta Herêma Kurdistanê, Kawe Mehmûd:

# Obama soz daye Barzanî

**Hewlêr (Rûdaw)** – Berevajî wan aliyên ku dibejin ku di milmilaneya pejirandina yasaya hilbijartinan bo Parlamena Îraqê, Dewletên Yekgirtî yê Aöerîkayê (DYA) zext li kurdan kiriye û kurdan ji dest ji daxwazên xwe berdane, Berdevkê Hikumeta Herêma Kurdistanê pejirandina yasaya hilbijartinê wek "serketina kurdan" dide zanîn.

Berdevkê hikumetê da zanîn ku Serokê Amerîkayê Barack Obama di vê derbarê de çend sozan daye Serokê Herema Kurdistanê Mesûd Barzanî.

Pejirandina yasaya hilbijartinan bo Parlamena Îraqê, kurd kirin du beş. Beşek di wê baweriyê de ye ku 'di wê milmilanê de kurd serkeftî derketine û zirar nekirine', beşeke din ji dibêjin 'kurdan gelek tenezul ji mafên xwe kirine.'

Di vê derbarê de Berdevkê Hikumeta Herêma Kurdistanê, Kawe Mehmûd dibeje ku ew bawer nake ku kurdan tenezul kiribe û pirsgirêk di wir de ye ku mijar di çarçoveyek dirust de nayê şirovekirin: "Beriya her tiştî divê em pirsa wê yekê bikin, ka çima ev hemû pirsgirêk di derbarê yasaya hilbijartinan de peyda bûn? Li hemû cîhanê, çend salan carekê hilbijartin tên kirin û gelek normal derbas dibin, kes ji behsa yasaya hilbijartinan nake. Çima li Îraqê ev hemû danûstan li ser yasayê tê kirin, lê ne li ser hilbijartinan bi xwe? Ji ber wê yekê ye ku li Îraqê sistema yasayî xwecih nîne û em hîn jî di asta avakirina dewletê de ne û hîn jî komeke pîvan hene ku pêwîstiya wan bi ronîkirinê heye."

Kawe Mehmûd tunebûna serjimêriyek bi rêk û pêk li seranserê Îraqê weke pirsgirêkeke bingehîn dibîne û dibeje ku ji ber wê yekê ji jî neçarî forma xwarinê weke bingeh tên bikaranîn: "Di vê meseleyê de ji dibe ku formên Kurdistanê rastirîn bin, lê li cihên din ne wiha ye. Lewra neçar bûn ku vegerin kombûnên sala 2005'an û wan bikin bingeh. Li gorî wê bingehê me mafê xwe standiye û du kursiyên me zêde dibin, dibin 43 kursî. Ev ji tenê ji bo sê parêzgehên Herêma Kurdistanê re ne, lê ne ji bo wan kurdên ku dikevin derveyî sinorê niha yê Hikumeta Herêma Kurdistanê. Lewra nabe em bêjin ku kurdan xesar û tenezul kir."

Li gor qanûna Îraqê di hilbijartinan parlamenê de ji 100 hezar kesan re yek kursiyê parlamenê dikeve. Kawe Mehmûd dibeje ku ev ne pîvaneke nû ye û ev yek ji despêka proseya siyasî de hebû ye û di destûrê de jî hatiye bicihkirin: "Ez bawer im ku di wê milmilaneya siyasî de kurdan serkeftinek berçav bi dest xistine. Em nabêjin serkeftineke gelekî mezin e, lê serkeftine û kurdan mafê xwe stendine. Di vê milmilaneya siyasî de aliyên navnetewî hatine ser xetê û li wir giraniya Herêma Kurdistanê diyar bû. Serokê DYA'yê Barak Obama û cigirê wî Joe Biden peywendî bi Serokê Herêma Kurdistanê re danîn û çend sozên siyasî dan. Lewra pêwendiya Obama ya li gel Serokatiya Herêma Kurdistanê giringiyeke xwe ya taybetî heye."

Berdevkê hikumetê iddiayên ku zext li kurdan hatiye kirin ku yasaya hilbijartinan qebûl bikin, red dike: "Dibe ku şiroveyên ne li gorî pêwîstiyê bin. Ji bilî vê jî ne diyar e ku vê carê kurd bi yek listeyê beşdarî hilbijartinan bibin. Hebûna gelek listeyan jî pêşbaziya hilbijartinan dirust dike. Lewra dibe ku ew axaftin beşekî ji kampanya hilbijartinan bin. Lê kesê ku axaftinê bike, divê li ser bingeha şiroveyê biaxife. Helbet ne bi gorî xwesteka me, rêje tên danîn. Divê yasayek hebe ku wan rêjeyan diyar bike. Di dema danîna yasayê de, gotûbêjker û nûnerên kurdan nehiştin neheqî li me bibe."

# "Kerkûka firenetewî dikele"

**LÎZ SLY**



*Piştî hilweşîna rejîma Saddam Huseyîn, bi hezaran malbatên kurd vegeriyan Kerkûkê.*

**Kerkûk** - Rûniştvanên wê dibêjin têkiliyên wan baş in, lê hinek ereb û tirkmen jî dibêjin; 'em bi hatina vê şepola kurdan a nava bajêr nerihet in.'

Li kêlaka vî bajarê dîrokî, di nav zêviyên li ser petrolê, çend xanî hatine dirûstkirin û pirraniya wan jî nîvçe mane. Ev jî nîşana wêya ye ku hêj proseya avakirinê bi dawî nehatiye. Xanî ji aliyê kurdan ku vedigerin Kerkûkê tên avakirin. Bi gotina wan ew jî bo bidestxistina xaka xwe, ya ku di dema xwe de Saddam Hûseyin bi armanca erebkirina herêmê jî wan standibû, hatine.

Ev agirê petrolê sedema sereke eşkere dike ku çima milmilanêyek ewqas mezin li ser vî bajarî heye. Kerkûk li ser nêzî 10 milyar bermîlên petrolê ye û di rewşa niha de jî çarêkek ji berhemê giştî yê petrola Îraqê pêk tîne. Ev jî bese ji bo dewletek serbixwe ku xwe pê îdare bike. Eger daxwaza kurdan hate cih û ew navçe bi herêma bakûre Îraqê (Başûrê Kurdistan) hate girêdan û eger ew navçe ji dest Îraqê derkeve, ev yek bese ku ew welat iflas bike.

Ew ereb û tirkmenên ku li vê derê dijîn, dixwazin ku bajar di bin kontrola Îraqê de bimîne. Ev bi wê hêjmara zêde ya kurdên ku hatine nava wî bajarî ecêb mayine û bi nêrîna wan ev hêjmar ji wê hêjmara kurdên ku Saddam ji Kerkûkê derxistin, zêdetire. Ew ji wê yekê bi gumanin ku kurd li vê derê hêjmara xwe zêde bikin, ji bo ku bandorê li ser encama wê referandûmê bikin.

Serokê lista Yekgirtî ya Ereban (Lista Ereban a herî mezin ya li Kerkûkê) Hûsên Elî Salih, ku bi Ebû Saddam hatî naskirin, di derbarê hatina kurdên ji derveyî Kerkûkiyan ve dibêje: "Karek pir xerib e. Niha li Kerkûkê kurd pirranî ne, lê pirraniya wan ne Kerkûkiyên resen in."

Lê mesele ji vê yekê mezintir e. Li vê derê pirsek sereki di derbarê nasnameya rastî a Îraqê tê holê; baştire ku Îraq welatek xwedî hikûmetek navendî ya bihêz be ku hemû netewe bi hevre kar bikin? Yan jî baştire ku jî çend herêmên federal pêk bê, her wekî Herêma Kurdistanê ku têde neteweyên cûda yên Îraqê mafê rêvebirina karên xwe hebin? Bêguman ev pirs ewrekî reş dixe ser hilbijartina vê carê.

Serokê beşa Rojhilata Navîn ê Grûba Krîza Navnetewî, Hilterman, di wê baweriyê de ye ku di vê meseleyê de metirsiya wê yekê heye ku Îraq bikeve nava nakokiyek nû. Ew jî wê navbera kurd û ereban de be. Eger heya dema vekişîna hêzên Amerîka nakokî bi rêyek aştiyane neyê çareserkirin, dibe ku cîranên Îraqê jî bikevin nav.

Tirkiye, Sûriye û Îran bi baldarî temaşeyî gûhertinên vê dawiyê dikin û ji wê yekê jî gelekî ditirsin ku Kerkûk bikeve ser Herêma Kurdistanê û kurdên Îraqê welatê xwe jî serbixwe bikin. Fermandarê giştî yê hêzên Amerika yê li Îraqê general Rey Odêrno nakokiyên kurd û ereban bi "metirsiya sereke li ser aramiya Îraqê" destnişan dike. Di vê derbarê de Hilterman jî dibêje: "Kerkûk meseleya Îraqê ya sereke ye. Beşekî zêde têkilî bi petrolê heye, lê di heman demê de jî têkilî bi nasnameya Îraqê ve heye."

Di bazara di bin qûntara kelha dîrokî ya wî bajarî de, dikandar jî bo firotina kelopore xwe bi hersê zimanên kurdî, tirkî û erebî dikin qêr. Hêma bi hersê zimanan di wê bazara teng de di reqabetê de ne û hemû kelopûrên tê de difiroşin. Di aliyekî wê bazara kevin de çend bergdirûyên kurd û tirkmen, mil bi milê hev çakêt û pantoran didirûn. Ebas Kemal (29) tirkmen e û dixwaze Kerkûk di bin kontrola Îraqê de bimêne: "Lê ti pirsgirêk nîne eger bikeve ser Kurdistanê. Pirsgirêk tenê di navbera siyasetmedaran de heye. Em wekî tirkmen bi birayên kurd û ereb re bi aştiyane dijîn." Awat Seîd (37) kurdekî hevpîşeye, ti carê Kerkûk li paş xwe nehiştiye û dixwaze Kerkûk bikeve ser Kurdistanê: "Lê eger nekeve ser Kurdistanê jî nabe problem. Li vê derê ti pirsgirêkeka me nîne. Ji bo me tişta herî giring bi hevre jiyankirine."

Lê kurdên ku li kêleka bajêr xanî çêkirine, dibêjin ku pirsgirêk jî wê yekê kûrtir e ku têkilî bi Kerkûka "nû" û "kevin" ve hebe. Pirraniya kesên ku jî me re peyivîn, ragihandin ku malbata wan jî sala 1963'an ve jî Kerkûkê hatine derxistin. Ev jî pêleka şidetê ya ereban ku li dijî kurdan hatî kirin bû. Dema beriya serdema Saddam Huseyîn, niha hatiye jî bîr kirin.

Li gor belgenameyan 92 hezar binemalên kurdan ên mezin navê xwe jî bo tezmînatê nivîsandine. Li gel vê yekê jî 28 hezar binemalên erebên derdorê jî bo vegerin cihên xwe û tezmînate wergirin, navê xwe nivîsandine. Ji ber vê yekê tirkmen û ereb vê pirsê dikin ku çima hêjmara rûniştvanên vê wîlayetê di sala 2003'an nêzî 800 hezar bû û niha jî bûye 1.3 milyon kes. Rayedarên kurdan dibêjin ku ji dervey Kerkûkiyan, di nava kesên vegeriyayîn de ti kes nîne.

Lê hemû alî li ser tiştekê li hev nakin; serjimêriya sala 1957'an. Bi nêrîna hinek aliyekê pêwiste ev serjimêrî bê bikaranîn, da ku bê eşkerekirin ka kî dikare di referandûmê de dengê xwe bi kar bîne. Di wê serjimêriyê de di bajarê Kerkûkê de tirkmen pirranî bûn, lê bi şeklekî giştî wîlayet kurdî ye.

Elî Fetah (40) berî 3 mehan çû xaniyê xwe yê nû ku di nav zeviyên petrolê de ye û di wê derbarê de got: "Ev cihê ji dayikbûna bavê min e. Xizim û mirovên me li vir veşartine û ez her rojê diçim serdana gora wan. Ez hest dikim ku ev der ya min e. Lê bêguman ez dixwazim ku bikeve ser Kurdistanê, ji ber ku ji aliyê kurdan ve tê rêvebirin û heya niha hikûmeta Îraqê jî me re tiştek nekiriye."

**Jêder: Los Angles Times**

# Dadgehê girt, nijadperestan êriş kir



*Li Geverê roja şemiyê kurdan xwepêyandan li dar xistin, polîs bi panzeran êrişê wan kir* *(Wêne: Rûdaw)*

**Tirkiye/Kurdistan (Rûdaw)** – Piştî ku Dadgeha Destûrê biryara girtina DTP'ê da, li bajarên Tirkiye û Kurdistanê bi deh hezaran kurd bi meş û mîtîngan nerazîbûniyên xwe nîşan dan. Di çalakiyên li Kurdistanê de girseya gel rastê êrişa polîsan hat û gelek kes birîndar kirin û girtin. Di çalakiyên li bajarên Tirkiyeyê de jî nijadperestan êrişê kurdan û avahiyên DTP'ê kirin. Pêla çalakiyên kurdan gihîşt heta Fransa û Libnanê.

Komek kurd roja 13'ê Kanûnê piştî serdana piştgiriyê ya DTP'ê, li navçeya Beyoğluya Stenbolê ber bi Dolapdereyê ve meşiyan û girtina DTP'ê şermezar kirin. Di wê navberê de hin kesan kevir avêtin qehwexana serokê Rêxistina DTP'ê ya Beyoğluyê û paşê heman koma nijadperst êrişî kurdên ku dimeşin, kir. Piştî gengeşiyê koma protestokar belav bûn lê nijadperest demek dirêj bi sator û daran li nav taxê li ber çavên polîsan geriyan. Di vê navberê de kurdê bi navê Şevket Aslan jî bi guleyan birîndar bû. Dema ciwanên kurd dimeşiyan, ji qehwexana MHP'yiyan hin kesan heqaret li kurdan kirine û êrişî koma ciwanan kirine. Şahidên bûyerê daxuyandin ku 5-6 kesan bi hev re çek derxistine û gule li derdorê reşandine. Hat ragihandin ku mijar bi organîze bûye û ji ber ku herkesê di nav demek kin de sator, jincîr, dar, kevir û çek derxistine. Li gel êrîşkar di wêne û dîmenan de bi zelalî xuya dikin jî, heta niha di derbarê wan de ti lêpirsîn nehatiye destpêkirin.

Li Meletiyê komek endamên DTP'ê ku xwestin bi daxuyaniyekê girtina DTP'ê şermezar bikin, rastî êrişa komek nijadperst hatin. Di encama êrişê de alozî pêk hat. Derdora avahiya rêxistina DTP'ê ji aliyê polîs û komek nijadperest ku ji nêzî hezar kesî pêk dihat, hat dorpêçkirin.

Avahiya rêxistina DTP'ê ya navçeya Yenişehir a Mersinê ji aliyê kesên nasnameya wan nediyar ve rastî êrişê hat. Di êrişê de camên avahiyê şikestin. Heman êriş li dijî avahiya DTP'ê ya navçeya Milasê jî pêk hat. Di êrişê de şibakên avahiyê şikestin.

**Polîs li Kurdistanê çalak bû**

Kongreya Civaka Demokratîk (DTK), civîna xwe ya awarte di rojên 12 û 13'ê Kanûnê de li Amedê pêkanî. Piştî daxuyaniya çapemeniyê ya ku li ber avahiya rêxistina DTP'ê ya bajar pêk hat, bi hezaran kesên ku meşiyan, rastî mudexaleya polîsan a bi bombeyên gazê hatin. Bi mudaxaleya polîsan re girseyê bi keviran bersiv da polîsan û bûyer mezin bû.

Li navçeya Geverê ya Colemêrgê, di navbera polîs û çalakvanan de pevçûn derket. Di buyerên qewimîn de kesek ji ber bombeya gazê ji lingê xwe ve birîndar bû, gelek kes hatin girtin.

Li Colemêrgê di bûyerên şermezarkirina şert û mercên serokê PKK'ê Abdullah Öcalan û girtina DTP'ê de polîsan di mudaxaleya girseyê de guleyên rastîn bikar anîn û erişê gel kir; di êrişê de 2 zarok bi giranî birîndar bûn.

Li navçeyên Hezex û Kerboranê yên ser bi Şirnexê, esnafan bi armanca biryara girtina DTP'ê şermezar bikin, dikanên xwe venekirin. Li her du navçeyan jî hemû esnafan dikan venekirin û ti kes derneket kolanan. Li navçeyan polîsan tedbîr girtin û li navçeya Hezexê jî dikanên girtî kişandin kamerayê.

Kurdan li Ewrûpa û Rojhilata Navîn jî biryara girtina DTP'ê şermezar kirin. Li bajarên Fransayê Rennes û Bordeaux bi hezaran kurd meşiyan û biryara Dadgeha Destûrê û pêkanînên li dijî serokê PKK'ê Abdullah Öcalan şermezar kirin.

Li paytexta Libnanê Beyrutê jî ji bo şermezarkirina girtina DTP'ê komeke kurd xwestin ber bi konsolxaneya Tirkiyeyê ve bimeşin. Polîs li pêşiya girseya gel barîkat ava kir û nehîşt ku kom bimeşe. Di gengeşiyê de 4 kurd ji aliyê polîs ve hatin brîndarkirin.

# Gelo dîrok dubare dibe?



Bayram Ayaz

Belê, du tarîx û du bûyer. 24'ê Gulanê 1993 û 7'ê Kanûn 2009...

Kuştuna 7 leşkeran li Reşadiyê bûyera 33 leşkeran anî bîra me. Tesadufeke balkêş e, ev herdu bûyer jî roja duşemê qewimîn. 24'ê Gulanê jî wekî çar roj berê rojeke duşemê bû.

Dixwazim derbarê wê bûyerê de bîranîneki xwe bi xwendevanan re parve bikim.

Wê rojê me bihîst ku çekdarên PKK'ê hêla Newala Mendo rê birîne, eskerên sewqiyatê revandine. Ez yekser çûm mala rahmetî Hemreş Reşo, bajarê Rattingenê. Bûyereke girîng bû, diviya qenc bê nirxandin. Demeke hesas bû. Me dixwest em di derbarê bûyerê de agahdariyên rast bi dest bixin û helwesteki jê diyar bikin. Wê demê peywendiyên navbera partiyan jî baş bû. 11 partî û rêxistinên Bakurê Kurdistanê li ser danîna cebheyeki netewî kar dikir.

Ji bo me gelek girîng bû ku em ji devê kesê yekemîn agahdar bibin.

Rahmetî kek Hemreş telefonê A. Öcalan kir. Mîkrofona telefonê jî vekiriye da ku ez jî bersiva A. Öcalan bibihîsim.

Kek Hemreş destpêkê li halê A. Öcalan pirsî û piştre jî pirsa vê bûyerê kir. Bersiva Öcalan bi tirkî bû û bi qasî tê bîra min wisa bû:

"Hevalê Hemreş, dogrudur, böyle bir olayı ben de biraz önce duydum. Detayi ile ilgili bilgilere sahip degilim. Yeni bilgi alınca arkadaşlar sizleri bilgilendirir." (Belê, heval Hemreş, rast e, min jî bûyer gavekî berê bihîst. Hûrgilî xwedî agahdariyan nînim. Wekî em agahdariyên nû bi dest bixin, wê hevalên me we agahdar bikin.)

Rahmetî kek Hemreş xemgîniya xwe ji bûyerê diyar kir û daxwaz kir ku pêvejoya şerrawestinê û hewldanên aştiyê neyê asê kirin. A. Öcalan jî xemgîn bû û gazinan dikir. Helwestê wî demê mirin an kuştina Turgut Özal de jî qenc bû.

Piştî axaftina bi telefonê, me jî di nav xwe de axaft. Dilê me hinekî rehet bûbû ku fermana wê bûyerê ji Bekaa nehatiye, heta li cem me bawerî peyda bû ku bûyer ji derveyê agahdariya A. Öcalan qewimiye.

Me bi wê dilrehetiyê beyana ser navê Serokatiya Hevgirtin-PDK'ê nivîsî û ji Özgur Gündemê re rêkir. Daxuyaniya Hevgirtin-PDK'ê min bi tirkî nivîsî û roja 27'ê Gulanê 1993 di çapa Tirkiyeyê de, piştî rojekî (28.05.1993) jî di çapa Ewrûpayê de derket. Me di daxuyaniya xwe de dewlet gunehbar kir, li gora me berpirsiyarê wê bûyerê dewlet bû. Sernivîsa rojnameyê jî ev bû: "Hevgirtin-PDK'ê dewletê sucdar kir". Me di daxuyaniya xwe de bang li PKK'ê jî kiribû û gotibû: "Çawa PKK'ê berpirsiyarî nîşan da û rê li ber hewldanên aştiyane vekir, em hêvîdar in vê carê jî wê berpirsiyariyê di berdewam kirina pêvejoya lêgerînên çareseriyên aştiyane de jî nîşan bide."

Wekî tê zanîn, du-sê roj paşê PKK'ê xwedî li wê bûyerê derket. Piştî girtina xwe jî A. Öcalan tiştên din gotin. Wê bûyerê wek 'provakasyon' bi nav kir û Şemdîn Sakik wek berpirsiyarê bûyerê îlan kir. Bi ya min rastiya wê bûyerê hê jî baş derneketiye ortê. Heta ev bûyer qenc zelal nebin, wê destê dijminan di nav me de be û wê bi me bilîzin. Dewleta kûr konsepteke nû amade kiribû, (konsepta 'düşük yogunluklu savaş / Low Intensity Warfare) kuştina Turgut Özal û bûyera kuştina 33 leşkeran bû destpêka cîbecîh kirina wê konseptê. Çi bû, çi qewimî em hemî bi hevra bûn şahidê bûyeran. Piştre Yalçin Küçük li wan dera çi kir, em nizanin.

Em werin bûyera îro.

Belê, bûyera îro jî gelek dişibe bûyera 33 leşkeran. Ev provakasyon e. Emê encamên xerab yên vê bûyerê bi hevra bijîn.

Bi vê bûyerê tevgera kurd wê bibe aletê planên tirkçiyan û mîlîtarîstan. Eger A. Öcalan û serokatiya PKK'ê difikirin ku wê bi şer xwe bikin şirîk û muxatabê vê pêvejoyê, wê bibînin ku ev hesab û ev siyaset ne rast e. Niha ewqasî. Ev bûyer wê gelek zerar û ziyanê bide tevgera welatparêza Bakurê Kurdistanê, lê dikare bibe şanseki jî, da ku hinek deriyên nû jî bo siyaseta sivîl û demokratîk vebe.

...

Ew tirsên ku me işaret dikir, yek jê pêk hat. DTP hat girtin. Kesen wek Ahmet Türk, Sedat Yurttaş, Orhan Miroğlu, Selim Sadak, Hilmi Aydoğdu jî êdî penc salan wê nikaribin siyasetê bikin. Gelek balkeş e!

Panela TOHAV'ê

# "Li Tirkiyeyê îradeya çareseriyê tune"




**Stenbol (Rûdaw)** – Roja 12'ê Kanûnê TOHAV'ê (Wexfa Lêkolîna Hûqûqa Civakî) li Stenbolê bi navê "Di Demên Navber de Dad û Demokrasî" panelek li dar xist. Panela ku ji welatên cuda gelek parêzer û huqûqnas anî cem hev, ji aliyê TOHAV'ê û bi piştgiriya Navenda Olof Palme û Yekitiya Parêzerên Bêsînor ên Swêdê hat li dar xistin. Serokê TOHAV'ê Hakan Gündüz ragihand ku îradeya ku li gelek welatan di demên navber de derketiye û pirsgirêkên paşerojê çareser kiriye, niha li Tirkiyeyê tune.

Serokê TOHAV'ê Hakan Gündüz ji Rûdawê re ragihand ku wan panel di sê beşan de birêvebirine. Gündüz da zanîn ku di beşa yekem de ji Zanîngeha Stockholmê Prof. Said Mahmoudî axifî û mekanizmayên huqûqê ên li Yekitiya Netewan û Yekitiya Ewrûpayê nirxand û bingeheke teorîk saz kir.

Piştî axaftina Prof. Mahmoudî, serokê Yekitiya Parêzerên Bêsînor Claes Forsberg û endamê vê saziyê Marie Alwa von Baltenau di derbarê pratîkên hin welatan de axifîn. Li gor ragihandina Gündüz, herdu panelîstan ji pratîkên Kosovo, Arjentîn, Spanya û Yûnanistanê mînak anîne ziman.

Di beşa sêyem de ji Zanîngeha Egeyê Prof. Melek Göregenli di mijara li Tirkiyeyê "rûbirûmayîna bi paşerojê re" nirxand.

Serokê TOHAV'ê Hakan Gündüz pirsên di derbarê armanca panelê û dada demên navber de wiha axifî: "Gelek welatên ku niha demokratîk in, demek berê bi diktayan dihatin rêvebirin. Rayê gelek dewletan ji rejîmên totaliter tê. Di paşeroja wan de gelek komkujî, işkence û teda heye. Lê li van welatan di demên navber de îradeyek xurt derketiye û pirsgirêkên berê li gor dilê hemwelatiyên xwe çareser kirine. Mixabin ev yek niha li Tirkiyeyê tune."

Gündüz bibîrxist ku di panelê de mijara paşeroja Tirkiyeyê hatiye rojevê û wiha axifî: "Tirkiye li dû xwe gelek tişt hiştiye û niha ketiye pêvajoya demokratîkbûnê. Paşeroja Tirkiyeyê gelek tarî ye, tê de ji komkujiya ermeniyan bigrin, heta binpêkirina serhildanên kurdan, bûyerên 5 û 6'ê Îlonê, darbeya 12'ê Îlonê, xirakirin û şewitandina 3 hezar gundên kurdan û gelek işkence û kuştin hene. Lê îradeyek civakî tune ku Tirkiyeyê bi paşeroja wê re bîne rûbirû."



## Sekreterê PDK-Îran Xalid Ezîzî:
# Îran rê bide, emê vegerin nav siyasetê

*Ezîzî dibêje ku slogana ruxandina dewleta navendî li hemû parçeyên Kurdistanê ne slogana gelê kurd e. "Kurdan ev dewlet ava nekirine û nikarin wan biruxînin jî."*

**Koye (Rûdaw)** – Sekreterê Partiya Demokrat a Kurdistanê (PDK-Î) Xalid Ezîzî ku bêtir bi baskê Evdila Hesenzade tê naskirin, hinek ra û nerînên nû di derbarê siyasetên Rojhilatê Kurdistanê tîne ziman ku heya li gel nerînên gelek serkirdên baskê Hesenzade bi xwe jî li hev neke.

***Gelo derfeta xwenûkirinê ya Komara Îslamî maye, an jî xelk dixwaze, bi çi awayî jî be, hilweşe?***

Mentalîteya ku niha di nav civaka Îranê de bi pêş dikeve, civaka Îranê digihîne dirustkirina mêkanîzmeke safîkirina hisaban li gel desthilatê, lewma rejim neçar e xwe paşde bikişîne.

***Di vê rewşê de ku hilweşandina Komara Îslamî ji aliyê hêzên derekî ve nayê pêşbînî kirin, tê dîtin ku hizbên Rojhilatê Kurdistanê bi tevahî diruşma hilweşandina rejima Komara Îslamî rakirine?***

Bi baweriya min slogana rûxandina dewleta navendî li hemû parçên Kurdistanê ne slogana gelê kurd e. Kurdan ev dewlet dirust nekirine û nikarin wan biruxînin jî. Kurd li Îranê neteweya sêyem e, ne di warê jimara daniştvanan û ne jî di warê hêza leşkerî de û ne li ser astê navdewletî jî kurd nikarin rejima Komara Îslamî hilweşînin. Partiya Demokrat a Kurdistanê naxwaze rejima Komara Îslamî hilweşîne, herwiha tiştê ne di îmkanên me de be û ne di cihê xwe de be, em behsê nakin.

***Eger Komara Îslamî ne amade be gotûbêjan li gel we bike lê rê bide we ku hûn vegerin, gelo hûnê vegerin?***

Eger Hikûmeta Komara Îslamî rê bide, li Kurdistanê xelkê desteser û darve neke û derfetê bide hizban ku bi awayekî siyasî çalakiyên xwe bikin, bi baweriya min hemû partiyên Kurdistanê divê vegerin û ji hundirê welêt çalakiyên xwe bikin û tevî hilbijartinên meclisa Şûraya Îslamî û hilbijartinên şûraya bajar û gundan bibin.

***Berê Partiya Demokrat biryar dabû ku tenê li ser bingeha encamên danûstandinan li gel Îranê vegerin. Niha eger derfeta vegera we hebe, hûn amade ne vegerin Îranê û li wir kar bikin û danûstandinan bikin?***

Em wek partiyeke siyasî bawer dikin ku Komara Îslamî ne federalîzmê qebûl dike û ne jî otonomiyê bo kurdan dipejirîne, lê eger Komara Îslamî ewlehiyê bide me ku em çalakiyên xwe yên siyasî bikin û li Kurdistana Îranê xelkê bi sedema nerînên wan ên siyasî desteser neke û darve neke, em vêya baş dibînin ku em vegerin hundirê welêt û li wir çalakî û karên xwe bidomînin.

***Lê we diruşma xwe ji otonomiyê guherand bo federalîzmê û hûn dibêjin Îran ne amade ye otonomiyê jî bide kurdan?***

Em niha di warê leşkerî de ti tehdîtê li dijî Komara Îslamî pêk nayînin, lê di pêşerojê de eger rewş hat guherîn û heyameke din bê pêş ku senaryoyê êrîşên leşkerî li dijî Îranê bên rojevê, kurd di pratîkê de hêzek in û PDK jî beşek ji wê hêzê ye. Lê di warê ragihandin û dîplomatîkî de, em guşaran dixin ser Îranê. Herwiha federalizm di peyrew û programê me de heye lê ne şerte ew peyrew û programê partiyekê di yek rojê de û di yek danûstandinê de û di yek salê, yan sê salan de, bê cîbicîkirin. Em li dijî siyaseta "yan reş û yan sipî" ne.

***Di dema hikûmeta Bush de, Amerîkayê butçeyek bo hevkariya opozisyona Îranê terxan kir, para we jî ji wê butçeyê hebû?***

Na. Beşê mezin ê wê butçeyê giha beşê farisî yê radyo û televizyona Amerîka. Beşekî din jî li gor axaftina wan bi awayên cuda cuda bo pêşxistina xebata sivîl li hundirê Îranê hat terxankirin.

***Hûn demekê nûnerê Partiya Demokrat li Amerîka bûn, hûn wek PDK niha ti peywendiyên we li gel Amerîka hene?***

Niha peywendiyên me li gel Wezareta Derve ya Amerîka hene. Berî çend mehan li gel berpirsê beşê Rojhilata Navîn civiyam û me xwest Amerîka ji xeynî pirsgirêka atomî li gel Îranê berê xwe bide pirsên mafên mirovan û demokrasiyê jî û guşaran bixin ser Îranê. Civaka Îranê pêş dikeve û komareke Îslamî red dike. Li gor me pir xwezayî ye ku PDK li gel hikûmetên Enqere û Şamê jî peywendiyan ava bikî lê ya girîng naveroka van peywendiyan e.

***Amerîka kurdan wek aliyekî sereke yê opozisyona Îranê dibîne?***

Îran weleteki pirr netew e. Li gor netewên din kurd bêtir tên naskirin ji aliyê wan ve û ew baştir pêşwaziya rêberên kurdên Îranê dikin û bi baweriya wan kurd faktorekî girîng in di qada siyasî ya Îranê de. Lê di heman demê de, nerîna me di derbarê federalîzm û pêşeroja Îranê ne wek ya Amerîka ye. Ew bêtir pêdagiriyê li ser mafê hevwelatîbûnê, demokrasî, serweriya yasa û mafên jinan dikin. Herwiha pêdagiriyê li ser guherandina tevgera siyasî ya hikûmeta Îranê dikin.

***Ti peywendiyên we li gel Tirkiye hene?***

Bi baweriya me baş e eger peywendiyên me li gel Tirkiyeyê hebin, nemaze ku niha AKP gavên baş diaveje. Niha ti peywendiyên yekser di navbera me de nine, lê belê bi rêya ragihandin û rêyên din peywendiyên ne yekser di navbera me de hene.

***Di konferansa salane ya Partiya Karkerên Brîtanyayê hevdîtina we li gel berpirsên Îsrail hebû?***

Di wê civînê de min serokê Partiya Kar a Îsraûlî Ehud Barak dît. Me behsa hinek babetên giştî kir. Hizba Demokrat ti welatekî cîhanê wek dijmin nabîne. Komara Îslamî jî ne dijmin e lê hinek pirsgirêkên siyasî di navbera me de hene. Em Îsraîl wek dijminê gelê kurd nabînin, herwiha cihûyan jî. Lê di pratîkê de ti peywendiyên me li gel Îsraîl tune.

***Bernameyek we heye bo girêdana kurdan li gel bizava kesk li Îranê?***

Me hewl da bi awayekî yekser peywendiyan li gel rêberên bizava kesk li Tahranê dirust bikin, herwiha li derve jî. Me ji wan re got tecrubeya kurdan a 30 salan di warê berxwedan û xebat û pirsa siyasî û leşkerî li dijî Komara Îslamî heye. Me ji wan re got 'hun fêdê ji tecrubeya me bigirn û em jî fêdê ji we bigrin.' Bi baweriya me kesên desthilatdar eger ji pirsgirêka me fam nekin, em nikarin li Tahranê aktorekî aktîf bin. Niha em di derbarê yekgirtinê de gotûbêj dikin.

# Cihê kurdan di demokrasiya Tirkiyeyê de nîne!



**Mustafa Şefîq Edilbî**

Dadgeha Destûra Bingehîn a Tirkiyeyê biryara girtina Partiya Civaka Demokratîk – DTP'ê pejirand, DTP tê girtin. Li 37 endamên herî pêş ên DTP'ê kirina siyasetê bo pênc salan hat qedexekirin. Bê guman ev rewş ji bona kurdan ne rewşek xerîb e, belkî eger ku DTP demeke dirêj nehata girtin, ewê gelek guman li ser DTP'ê çêbûna. Di dîroka Komara Tirkiyeyê de DTP partiya 37'emîne ku tê girtin. Pirranya wan partiyên girtî an partiyên kurdan, an jî partiyên demokrat, dostên kurdan bûne. Lê tiştê herî berçav ewe ku di van 30 salên dawî de herî zêde partiyên kurdan hatine girtin. "Tirkiye bûye goristana partiyên siyasî" gotina herî raste ku vê rewşa Tirkiyeyê tîne ziman.

Yasaya ku bi vî awahî weke celladê partiyên siyasî kar dike, bi armanca rêgirtina pêşveçûna tevgera azadîxwaza Kurdistanê û tevgera demokrasiyê li Tirkiyeyê tê bikaranîn û desthilata siyasî li Tirkiyê piştevaniyê li vê yasayê dike. Ev siyaseta hov ku 80 sal li Tirkiyeyê tê meşandin, ne kariye ti encameke erênî ji bo gelên vî welatî bi dest bixe.

Di serî de weke ku armanca vê siyasetê tunekirin û înkara gelê kurd bûye, îro ji her demê zêdetir kurd şiyarin û bi rêkxistin in. Bi girtina partiyên kurdan jî Dewleta Tirk nekarî rê li pêşveçûna tevgera kurdan bigire. Çawa ku hovîtiya faşîzma 12'ê Îlonê nekarî rê li pêşveçûna vê tevgerê bigire, hikûmetên paşî cûntaya 12'ê Îlonê jî ku hatine ser desthilatê nekarîn bi van siyasetan ti encaman bigirin. Berevajî vê çendê ev siyasetên hanê rolekî erênî dibînin ji bona zêdetir şiyarbûna kurdan, herweha mafê zêdetir dide kurdan ku ji derveyî yasayên vî welatî jî li rêkên din ên xebat û tekoşînê bigere.

Faşîzma 12'ê Îlonê sedemek bingehîn bû ji bona bilindbûna şerê li Kurdistan û Tirkiyeyê. Desthilatên nedemokratîk, ewên ku paşî 12'ê Îlonê hatin ser desthilata Tirkiyeyê, sedem bûn ku şer hîn bilindtir bibe. Îro jî eger yasayek ne demokratîk li Tirkiyeyê hikum bike, ev yasa di navbera gelan de cudahiyê çê bike, di vê yasayê de edalet nebe û herdema bûyerek li xweşiya tirkan neçe tometa terorê bi kurdan ve bizeliqînîn, mirovan dadgeh bikin, partiyên siyasî bigirin, ev yek ti cûdabûna xwe digel faşîzma 12'ê îlonê namîne. Cudabûn tenê ewe ku li cihê leşkeran dixwazin yasayek antîdemokratîk bi kar bînin.

Wekî din jî AKP dixwaze cudabûna xwe ji partiyên din bide nîşan. Lê girtina DTP'ê perdeya ji ser rûyê AKP'ê rakir û rastiya wê nîşan da. Destûra Bingehîn, AKP û organên din yên dewletê bi hevre kar diken, ji bona ku AKP'ê bikin qehremanê hemdemî ji kurdan re, AKP bibe bavê kurdan û li derveyî AKP'ê kesek din li Kurdistanê nebe hevrikê wê. Lê ev biryara dadgehê wê di qada navnetewî de AKP'ê û Dewleta Tirk zedetir bixe tengasiyê, demokrasiya Tirkiyeyê derbek mezin xwar. Di qada navxwe de cûdabûna di navbera kurdan û tirkan ewê zêdetir bibe. Ew kurdên di nava dezgehên AKP'ê de jî kar dikin, ewê rû bi rûyê pirsek giring bibin, ew jî eve: gelo di nava sîstema dewleta tirk de em çi ne? Ewê neçar bimînin bersivek rast bidin vê pirsê, eger na ewê nekaribin bi hêsanî di nava gelê kurd de cih bigirin.

Ev biryar carek din rê li pêşiya kurdan vedike ku li derveyî sîstema Dewleta Tirk li çareseriyek din bigerin. Ji bo vê yekê cîhan jî wê zêdetir guhdariya dengê kurdan bike. Bi taybetî di vir de berpirsiyariyek dîrokî dikeve ser Ewrûpa û Rojava, ji ber ku heya niha wan hertim berê kurdan didan demokrasiya Tirkiyeyê. Lê eger cihê kurdan di nava demokrasiya Tirkiyeyê de nebe, gelo Ewrûpa û Amerîka wê berê kurdan bidin ku?

# Kurdên dikevin destê polîsê Sûriyeyê wenda dibin!

**Efrîn (Rûdaw)** – Li Rojavayê Kurdistanê girtin û wendakirina kurdan didome. Hemwelatiyê kurd bi navê Nûrî Îbrahîm Şêxo ku roja 23'yê Mijdarê ji aliyê polîsê siyasî yê rejima Sûriyeyê ve hatibû girtin heta niha wendayî ye.

Şêxo li Bajarê Helebê hatibû girtin. Dezgeha ragihandina Koma Civakên Kurdistan-Rojava ragihand ku Nûrî Îbrahîm Şêxo ji aliyê şaxê ewlekariya komarê li bajarê Helebê hatiye girtin û heta niha, heta niha aqûbeta wî ne diyar e. Şêxo li gundê Deraqlî/Efrînê di sala 1964'an de ji dayik bûye û li taxa Şêx Meqsûd a bajarê Helebê niştecih e. Ew bavê pênc zarokan e.



*Nûrî Îbrahîm Şêxo*

## “Tehamulê Ahmet Türk jî nekirin”

**Köln (Rûdaw)** - Parlamenê Bêdlîsê M. Nezir Karabaş ji Rûdawê re ragihand ku beriya ew biryarek hevbeş bigrin dixwazin ku herkesî guhdar bikin û nêrînên wan binirxînin. “Ev biryara me hîn jî derbas dibe, lê divê em hilbijêrên xwe, gelê xwe û rewşenbîran jî guhdar bikin da ku çi dibêjin. Emê vê heftê wiha derbas bikin. Niha em 19 kes in, Ufuk Uras daxuyand ku ewê ji bo avakirina grûbê amade be. Tu pirsgirêk tune, em dikarin di bin banê partiyek nû de grûbek ava bikin.”



*Sebahat Tuncel - (Wêne: Diha)*

Karabaş helwestên wek gilîkirina li Dadgeha Mafê Mirovan a Ewrûpayê tekez kir û wiha axifî: “Parêzerên partiya me wê hem li ser navê partiyê û hem jî li ser navê 37 hevalên me yên ku hatin qedexekirin, wê li DMME’ê doz vekin.” Karabaş herwiha da zanîn ku bi vê biryarê rêya siyaseta legal ji aliyê Dewleta Tirk ve hatiye birîn: “Ji kurda re dibêje ku eger hûn bixwazin siyasetê bikin, divê li gor min, li gor xwesteka min bikin. Dema hûn ji vê çarçovê derkevin ezê rê nedim we.”

Parlamenê Şirnexê û parêzerê DTP’ê Hasip Kaplan jî helwesta gilîkirina li DMME’yê tekez kir û got ku di biryara girtina Dadgeha Destûrê de iddiayên şaş hene. Dadgehê DTP û partiya baskan Batasuna ya ku ji aliyê İspanyayê ve hat girtin û di DMME’de jî ev biryar hatibû pejirandin, wek hev binav kiribû. Kaplan wiha axifî: “Di biryarê de me wek Batasuna dinirxînin. Lê di navbera DTP û Batasuna de gelek cudahî hene. Têkiliyên Batasunayê yê organik bi ETA’re hebûn, lê bi PKK’ê re têkiliyên me yên organik tunene. Gelek hevalên me jiber ku ji Öcalan re gotine ‘Birêz’ hatine tewanbarkirin.” Kaplan diyar kir ku Ahmet Türk, Aysel Tuğluk û Leyla Zana jî wê li DMME’yê dozên şexsî vekin.

**“Tehamulê Ahmet Türk jî nekirin”**

Parlamena DTP’ê ya Stenbolê Sebahat Tuncel ragihand ku piştî ku ji hevserokê partiya me re xedexeya siyasetê hatiye, tu wate tune ku ew li parlamentoyê bimînin. “Ligel raya giştî û rayedarên dewletê Ahmet Türk wek kesekî herî aştîxwaz û axaftvan binavkiribûn û digotin pê re axaftin dibe û hevdîtin çêdibe, lê siyasetê li wî jî qedexekirin. Tehamulê wî jî nekrin. Êdî wê bi kî re biaxivin? Ev tê wê wateyê ku dewlet nûnerên kurdan di parlamentoyê de naxwaze. Me jî di nava xwe de biryar da ku piştî serokê me ji parlamenteriyê hat daxistin tu wate tune ku em niha li parlamentoyê bimînin. Emê li Amedê bicivin, nîqaş bikin û biryarek hevbeş bidin.”

## “Girtina DTP’ê wek derbeyeke li dijî mafê kêmnetewan e”

**Köln (Rûdaw)** - Di derbarê girtina DTP’ê de ji Yekitiya Ewrûpayê (YE) û Dewletên Yekgirtî yên Amerikayê (DYA) daxûyaniyên cûda hatin ragihandin. Di daxuyaniya YE’yê de gotinên wek, “Em gumanan dikin” derketin pêş; DYA jî di daxûyaniya xwe de biryar weke, “karên Tirkiyeyê yên navxwe” bi nav kir.

**YE: Divê girtina partiyan bimîne herî dawî**

Ragihandin li ser navê hemû endamên YE’yê, ji serokê demê Swêdê hat. Di daxuyaniyê de girtina partiyan weke karê herî dawî tê dîtin û wiha tê gotin: “Girtina partiyan tenê di rewşên gelek awarte de dibe bê rojevê.” Daxuyanî wiha didome: “YE bangî Tirkiyeya, ku hê pê re hevdîtinên endametiyê tên kirin, dike ku destûra xwe biguherîne, hemû yasayên xwe li gor krîterên Komîsyona Vedenikê û li gor Konvensiyona Mafê Mirovan a Ewrûpayê ji nû ve çêke.” Di dawiya daxuyaniyê de hatiye gotin ku YE wê pêşketinan ji nêz ve temaşe bike.

**“Ev biryar ji vebûna demokratîk re sabotaj e”**

Hevseroka Komîsyona Parlamena Hevbeş a Tirkiye-YE’yê, Helene Flautre, girtina DTP’ê bi gotinên wek “ji vebûna demokratîk re sabotaj” nirxand. Flautre di daxuyaniya nivîskî de diyar kir ku grûba Keskan a li Parlamena Ewrûpayê ji vê biryarê gelek aciz bûne: “Ev biryar gelek ciddi ye û mirov dikare li pêşiya vebûna demokratîk a li Tirkiyeyê wek sabotajekî bi nav bike.” Flautre ji rayedarên DTP’ê daxwaz kir ku li dijî biryarê, di nava wan de Dadgeha Mafê Mirovan a Ewrûpayê jî, çi rê hebin bi kar bînin. Flautre bang reforma makezagonê li hikûmetê jî kir û xwest ku yasayên di debarê girtina partiyan de di ber çavan re derbas bike.

**DYA: “Azadiya hemwelatiyan girîng e”**

Berdevkê Wezareta Karê Derve yê Amerikayê Ian Kelly di dema bersivdayîna pirseke di derbarê girtina DTP’ê de got ku, “Ev biryar, karê Tirkiyeyê yê navxwe ye û em li ser vê yekê şîroveyê rast nabînin” û berdewam kir: “Divê Tirkiye azadiya siyasetê bide hemû hemwelatiyên xwe. Sîstema demokratîk a li Tirkiyeyê divê ji bo pêşxistina azadiyên siyasî yên hemwelatiyên xwe helwesta bidomîne. Divê tenê di rewşên awarte de ev azadî bên kêmkirin an jî ji holê bên rakirin.” Di daxuyaniya Amerikayê de ji hikûmet û DTP’ê re jî bang hebûn. Banga ku ji hikûmetê re hat kirin wiha ye: “Em piştgirî didin helwestên Hikûmeta Tirk a ji bo dayîna hemû mafên hemwelatiyên xwe.” Banga ku ji DTP’ê re, lê bê nav, hat kirin wiha ye: “Em bang li hemû aktorên siyasetê yên li Tirkiyeyê dikin ku bi hev re bi rûmetên demokrasiyê bişêwirin, ti caran şîdetê bikarneynin û cesaretê nedin şîdetê.”

**“Biryar wek derbe ye”**

“Rêxistina Mafê Mirovan“ Human Rights Watch (HRW) biryara girtina DTP’ê wek derbeyek li dijî mafê kêmnetewan û çareseriya pisrgirêka kurd nirxand. Raportora Tirkiyeyê ya HRW’ê Emma Sinclair-Webb di daxuyaniya xwe de bibîranî ku Dadgeha Destûra Bingehîn di sala 1962’an de hatiye avakirin û heta îro biryara girtina 25 partiyan daye. Emma Sinclair-Webb got ku bi girtina vê biryarê jî derkete holê ku divê bi lez reforma makezagonê bê kirin. Raportor wiha axifî: “DTP bû qurbana dawî ya yasayên ku ne di standardên navnetewî de ne. Girtina DTP’ê wek derbeyeke li dijî mafê kêmnetewan û çareseriya pirsgirêka kurd e.”

## “Li dijî aştî û demokratiyê şer îlan kirin”

**Köln (Rûdaw)** – Girtina DTP ji aliyê Dadgeha Destûra Bingehîn ya Tirkiyeyê li Ewrûpayê jî hem ji aliyê rêxistin û siyasetmedarên Ewrûpî û hem jî yên kurdan ve hat rexne û şermezar kirin,. Gelek rêxistinan kurdên Ewrûpayê bi daxuyaniyên nivîskî girtina DTP’ê şermezar kirin. Di daxuyaniyên bo Rûdawê YEK-KOM û KOMKAR-EU yê girtina DTP’ê weke biryareke siyasî bi nav kirin û bangî sazî, rêxistnên û rayedarên Yekîtiya Ewrûpayê kirn ku Tirkiyeyê şermezar bikin.

**YEK-KOM: Biryar siyasî ye!**

Cîgirê serokê YEK-KOM’ê Yüksel Koç: “Ev biryara hikûmetê ye, ya dewletê ye, ne tenê ya wan 11 kesan e. Wan li dijî aştiyê û demokratiyê şer îlan kirine. Komîsarê berfirehkirina YE’yê, Olli Rehn, di 5’ê Kanûnê de li ser pêvajoya endametiya Tirkiyeyê û rewşa DTP’ê daxuyaniyek da çapemeniyê. Em bawer dikin û hêvîdarin ku berpirsên Ewrûpayê li gotinên xwe xwedî derkevin. Di wê daxuyaniya Olli Rehn de tişteki gelekî balkêş heye, ew dibeje DTP piştî hilbijartinên adarê lêjîtîm bûye û ya din jî: ji bo emdametiya Tirkiyê ya Yekîtiya Ewrûpayê jî tişte herî giring naskirin û çareserkirina pirsgirêka kurd e.”

**KOMKAR-EU: Girtina DTP’ê xizmeta pêvajoya demokrasiyê û aştiyê nake**

Serokê giştî yê KOMKAR-EU Kovan Amedî: “Ev biryareke siyasî ye û ji ber vê yekê jî em vê biryarê şermezar dikin. Girtina DTP’ê û girtina çend partiyên din ku heta niha hatine girtin, xizmeta pêvajoya demokrasiyê û aştiyê nake. Qedexeya siyasetê li dijî 37 kadroyên DTP’ê em weke biryarek li dijî mafê mirovan dinirxînin. Em hêvîdarin ku hêzên kurd, hêzên aştîxwaz, hêzên demokratik, di vî warî de hestiyar bin û di kar û xebatên xwe de bi hestiyarî tevbigerin. Û ji aliyê hikûmetê jî divê girtina DTP’ê nebê sedema wê yekê ku prose bikeve tengasiyê. Hikûmet jî divê bêwestan û bi hestiyarî vê projeya xwe bidomîne.”

## “Biryar ne huqûqî ye, siyasî ye!”

**Enqere (Rûdaw)** – Piştî biryara girtinê rayedarên DTP’ê ragihandin ku ewê ji parlamentoyê derkevin û beşdarî rûniştinan nebin. Ev biryara DTP’ê di parlamentoyê de deng da. Rayedarên AKP, CHP û MHP’ê helwesta DTP’ê wiha nirxandin:

**Cîgirê Grûba AKP’ê Suat Kılıç**: Li Tirkiyeyê siyaseta meşrû li parlamentoyê tê kirin. Tiştê ku di dilê me de derbas dibe ew e ku, kesên ku bi dengên gel hatine hilbijartin divê xebatên xwe li Parlemtoyê bikin. Girtina DTP’ê biryarek giran e. Ji bi wan jî giran e. Me berê jî got, niha jî dibêjin, girtina partiyan di demokrasiyan de ne rêyeke çareseriyê ye. Girtina partiyan pirsgirêka girantir dike. Hemwelatiyên ku dengên xwe dane DTP’ê dive hay ji wan hebe, bi sebr û aramî de bimînin. Di navbera AKP’ê û biryara girtinê de ti têkilî tunene. Em li dijî girtina partiyan in.

**Cîgirê Grûba CHP’ê Hakkı Süha Okay:** Ew dibêjin me xwe fîilî vekişandiye, ne huqûqî. Ji bo vekişandina hûqûqî wê parlamento biryar bide. Parlamenteriya 19 kesan wê bidome. Ew dikarin di nav partiyekî nû de cîh bigrin. Jixwe Partiya Aştî û Demokrasiyê heye. Van hevalan jixwe di parlamentoyê de ne çalakbûn, hertim li herêmê bûn. Min axaftina Ahmet Türk baş dît. Ji bo gengeşî dernekevin axaftineke di cîh de bû. Wek mirovek siyasetmedar ê berpirsiyar axifî.

**Cîgirê Grûba MHP’ê Mehmet Şandır:** Ez vê daxuyaniya wan a piştî girtina partiyê rast nabînim. Daxuyaniyeke bi lez û bi hest bû. Em hêvî dikdin ku di piştî çend rojên din biryarek din bistînin. Gel wan hilbijartiye. Divê karê xwe li Parlamentoyê bikin. Nabe ku tevlî xebatên Parlamentoyê nebin. Ev rêya ku ketinê ne ji wan re, ne ji miletê re ti sûd nayîne.

**Cîgirê Grûba CHP’ê Kemal Kılıçdaroğlu:** Em naxwazin ku ti partiyek bê girtin. Her partiyek siyasî ji gel piştgirî distîne. Lê divê baweriya partîiyan jî ji Destûrê û huqûqî hebe. Divê her kes biryarên dadgehê qebûl bike û rêz nîsanî wan bide.

**Günay:** “Biryar ne huqûqî ye, siyasî ye!” Wezîrê Çand û Turîzmê Ertuğrul Günay ragihand ku biryara Dadgeha Destûrê siyasî ye. “Ez bawer nakim ku ev biryar li gor pêdiviyên Tirkiyeyê yên niha be.”

Günay daxuyand ku dadgehên Destûrê karên taybet dikin û biryarên girîng didin. Günay wiha axifî: “Li ser partiyên siyasî çavdêrî dikin. Gelek caran biryarên siyasî didin. Ez gelek mînakên wiha dizanim. Di pêvajoyeke gelek krîtîk de biryaran daye, lê sedemên wan piştî gelek salan aniye ziman. Ev biryar jî ne huqûqî lê wek biryarek siyasî xûya dike û ez bawer nakim ku ev biryar li gor pêdiviyên Tirkiyeyê yên niha be.”

## KCK: “Biryar wek komkujiyê ye”

Komeleya Civakên Kurdistan (KCK) di derbarê biryara girtina DTP’ê de ji Ajansa Nuçeyan a Firatê re daxuyand ku “biryar wek darizandin û komkujiya siyasî ye.”

Daxuyaniya ku ji aliyê Serokatiya Konseya Birêvebiriya KCK’ê hatiye kirin, destnîşan dike ku siyaseta tunekirinê bi şert û mercên Serokê PKK’ê Abdullah Öcalan xirab kirine, dest pêkiriye. “Di şexsê serokê me de, li diji gelê me û saziyên me bi awayekî faşîstî û netewperwerî êrîşên mezin didomin. Girtina DTP’ê encamê vê siyasetê ye. Ev biryar tiştek ne biçûk û hêsan e. Bi vê biryarê ew gelê ku bi milyonan deng dana DTP’ê jî nas nakin û mafên vî gelî binpêdikin. Darizandina siyasî û komkujiya siyasî ev e.”

Di daxuyaniya KCK’ê de hewlesta rayedarên DTP’ê a wek vekişandina ji parlamentoyê tê nirxandin û gavek di cîh ê tê dîtin. “Ev helwest wek xwestekên gel deketiye holê û pîvaneke bi rûmet e. Gelê me û DTP hertim siyaseteke demokratîk, wekhev û bê xapandin daxwaz kirine. Bi vê biryara vekişandine careke din gelê me nîşan daye ku alternatifên wî hene û dikare hemû rêyan biceribîne.”

## Kesên ku siyaset li wan qedexe bû:

Abdulkadir Fırat, Abdullah İsnaç, Ahmet Ay, Ahmet Ertak, Ahmet Türk, Ali Bozan, Ayhan Ayaz Aydın Budak, Ayhan Karabulut, Aysel Tuğluk, Bedri Fırat, Cemal Kuhak, Deniz Yeşilyurt, Ferhan Türk, Fettah Dadaş, Hacı Üzen, Halit Kahraman, Hatice Adıbelli, Hüseyin Bektaşoğlu, Hüseyin Kalkan, İzzet Belge, Kemal Aktaş, Leyla Zana, Mehmet Veysi Dilekçi, Metin Tekçe, Murat Avcı, Murat Taş, Musa Farisoğlulları, Necdet Atalay, Nurettin Demirtaş û Selim Sadak. Ev kes piştî ku biryar di Rojnameya Fermî de bê weşandin û 5 salên şûn de, nikarin bibin endamên partiyek din û nikarin li ser navê partiyekî siyasetê bikin.

Rûdaw

**Xwedî:** Rudaw Media GmbH · **Serokê Civata Birêvebir:** Nûredîn Weysî · nuradinwaisi@rudaw.net **Sernûser:** Ako Mihemed · akopress74@yahoo.com · **Rêvebirê Beşa Kurmancî:** Faysal Dağlı · faysaldagli@rudaw.de **Rêvebirê Beşa Soranî:** Hêmin Ebdulla · hemen@rudaw.nl · **Navnîşan:** Rudaw Media GmbH · Gutenbergstr. 63a · 50823Köln/ Almanya **Telefon:** +49 (0) 221.26 00 40 02 · **Telefax:** +49 (0) 221.26 00 49 81 **Web:** www.rudaw.net · **E-maîl:** info@rudaw.de (Beşa Kurmancî) · **E-maîl:** rudaw@rudaw.net (Beşa Soranî)



Şanoger Îzzetîn Oktay:

# Divê şano êşa gelê kurd derman bike!

**Amed (Rûdaw)** - Îzzetin Oktay ev demek dirêj e li Bakurê Kurdistanê bi şanogeriyê ve mijûl dibe. Heta niha di gelek lîstîkên şanoyê de wek nivîskar, şanoger û derhêner cihê xwe girtiye. Ev salek e jî li Sêrtê di bin banê Komela Çand û Hûnerî ya Mezopotamyayê (NÇM ya Sêrtê) perwerdeya şanoyê dide Koma Zarokan.

Di derbarê şano, huner û jiyanê de Îzettîn Oktay ji Rûdawê axivî û behsa kar û barê xwe kir. Oktay diyar kir ku Koma Şanoyê ya zarokan li Sêrtê cara yekemîn e ku hatiye avakirin, “Gelek kêfa min ji wan re tê. Gelek tiştên xweş çêdikin. Dema ez wan perwerde dikime wê heyecana li nav çavên wan ez pir şa dibim.”

Şanoger Oktay di berdewamiya axaftina xwe de gotinê tîne ser astengiyên wan ên ku li Sêrtê dikişînin, “Pirsgirêka me ya herî mezin cih e. Dera ku em bikaribin xebatên xwe tê de bikin gelekî teng e. Dema em lîstokên xwe amade dikin cihê ku em pêşkêşî temaşevanan bikin tune. Li Sêrtê du cih hene ew jî yên dewletê ne. Derfetên me yên aborî jî tune ku em cihekî ji xwe re ava bikin. Li hêla kostûmên lîstokan de kêmasiyên me çêdibin tu kes alîkariya me nake. Pirsgirêka herî mezin ji kêmasiya tekstên şanoyê ne.”

Li ser pirsa me ya “Gelo civak eleqeyeke çawa nîşanî leyîstikên we dikin?”, Oktay ji eleqeya gel kêfxweş e, “Bi rastî dema lîstokên kurdî em derdikevin li ser dikê gelek kêfa gel ji me lîstikvanan re tê. Bi gotinên Kurdî tama giyana lîstokan jî diguhere. Ji bilî hinek kesên xwenas, yên din li şanoyê bi çavên henekî û kenê dinihêrin. Civaka me şanoyê an wek tişteke henekî pêşwazî dike yan jî weke tişteki bê feyde dibîne. “Şanoya kurdî niha bi ser xwe ve tê. Weke zaroka li ber şîr e. Eger em kedekî pîroz li şanoya kurdî bikin, hingê wê pêşketinek mezintir jî çêbibe.”

Em dixwazin jê fêr bibin ka şano li Bakurê Kurdistanê dikare roleke çawa bilîze bo pêşketina zimanê kurdî, Oktay destnîşan dike şano û ziman wek dest û neynik in, “Şano jiyan e. Bingeha jiyanê jî ziman e. Bi rêya şanoyê ziman cihê xwe yê esasî digire. Ziman bi şanoyê bi awayekî zelal tê axaftin û li jiyana rojane de çêtir têye emilandin. Dema em perwerdeya şanoyê didin zarokan di sêrî de em axaftina rast ya kurdî nîşanî wan dikin. Çawa ku li ser dikê sekinîn bi awayekî ji xwe bawer pêwist e, ziman jî di şanoyê de wisa şert e.”

Dû re em gotinê tînin ser dijwariya rexneyê ya di şanoyê de: “Dema rexneya mîzahî di nava şanoyê de cih negire çawa ku mirov xwe tazî bibîne, tiştek wisa ye. Carna merivên dîn di şanoyê de çêran dikin. Carnan henekên xwe li hevalên xwe dike, bi awayekî henekî mijarekî hejarî dikeve hemberî temaşavanan. Divê mirov bi awayekî sûdeyî jiyana rojane bi henekên têr kurdewarî bi kar bîne...”

Di vir de em gotina wî dibirin û jê wiha dipirsin, “Hinek kes şanoya kurdî dikin, lê haya wan ji êş û elema civaka kurd tune. û vê êşê danaynîn ser sehneyê. Gelo tu vê yekê çawa dibînî?”, wisa dibersivîne, “Ew kesên tu dibêjî qaşo ew hunerê ji bo huneriyê bi kar tînin. Divê şanoya kurd êşa gelê kurd derman bike, zimanê kurdî pêşde bibe, çanda kurd li ser piya bihêle...”

Oktay dixwaze ku şanoya kurdî jî rojekî bigihîje asta dinyayê, “Ez xeyal dikim ku li her gund û bajar û navçeyan de zêdebûna komên şanoya kurdî pêk bê. Di her pêşkêşkirina şanoyê de eleqeyeke mezin ji bo şanoyê were dîtin. Divê saziyeke şanoyên kurd hebe. Mînak, Yekîtiya Şano û Şanogerên Kurd. Firsenda min çêbûya wê min xwe bida aliyekî, tenê min ê tekstên şanoyê binivîsanda. Kêmasiya me ya herî mezin tûnebûna tekstên kurdî yên şanoyê ne...”




*NCM'ya Sêrtê ji zarokan komeke şanoyê ava kiriye.* *(Wêne: Rûdaw)*

# Dengê ku di dojeha guh de dişewite



Müslüm Yücel

Min di mûzîka kurd de du dengan naskir; Şakiro û Eyşe Şan; herdu jî li İzmirê bûn û niha herdu jî tunene; di xeribiya bêsînor de ne, dengên xwe di erdê de veşartine. Ez bi hestên zarokatiyê hertim difikirim, ka erd wê kengî van dengan dîsa bide me? Van herdu dengên wek baranê wê kengî dîsa li guhê me yên zimanzan bikevin? Di wê navberê de dengê Rojdayê hat guhê min; guh dojehekî mezin e; dişewitîne, heldiçinîne, tiştên ku li paşiyê dimîne min û me vedibêje. Di dengê Rojdayê de dojehekî gelek mezin heye, gelek dengan dişewitîne, heldiçîne û di qefesa singê me de zêde dibe, diçe heta dilê me. Şakiro û Eyşe Şan hêdî hêdî guh didin dengê erdê û baran dengên nû tîne guhên me; ew nemirîne.

Li Mezopotamyayê, mirovê herî dirêj nikare bigîje ezman; mirovê herî qelew nikare hemû erdê tije bike; Xwedê jin e, dibe jin; jiber ku erd e; dayika ku zarûyên xwe himbêz dike, ye. Rojda bi sê dengan tê pêşberê me; di dengê yekem de denbej e; di yê duyem de xwişk û dayîk e; di dengê sêyem de mirov e. Rojdaya dengbêj di rewşa xwe ya yekem de Xerib e; kesê ku dibêje tiliya min diêşe ye; dibêje wey dilê min; di rewşa duyem de daxwaziya sebrê dike, dayîk e, xwişk e, di dilê xwe de hemû şeran dijî. Di rewşa sêyem de şîn û şahiyê dikare bi hevre bistire, ji aliyekî ve dibêje esmera min, ji aliyê din dibêje welatê min. Rojda klamên dengbejan ji nû ve nastire, wan didomîne. Kî wê guhdar bike, weke ku dengbêjê xwediyê wê klamê guhdar dike.

Em werin ser kilamên Rojdayê, kilama wê ya Tiliya min Diêşe; ji aliyê dengbêjên Erivanê hatiye tomarkirin, ji aliyê Ozan Şemdin û Werdeka Hemid ve hatiye strandin. Di rêzên pêşîn ê kilamê de sedemê êşandina tiliyê tên gotin. Tiliya min dêşe, mehr pêve da. Di rêza duyem de qêrîn û bang heye; jin ji mêrê ku jê hezdike, gazincan dike: Ez bi qurban, min bihîst ku tu jinekê dixwazî. Rêza sêyem kirt e, lê tê de wateyekî kûr heye: eger ji min baştir be, ezê bibim xizmetkara wê.

Di herdu rêzên dawîn de jî dîsa qêrîn û gazinc didomin. Di gotinên kilamê de, di rastiyê de mehr bi tiliyên jinekê ve nade. Ew tiliya xwe dike devê xwe û xwe dibe û tîne; di dema çûn û hatinê de ew jin tiliya xwe gez dike û hemû jehrî diherike. Ew êşa ku tê kişandin ne êşa jehra mehr e; lê ew jin ji gotinên zilam êşiyaye. Dema ku zilam diçe jineke din, êşa jina wî zêde bûye. Wek jehriyê ew êş di hemû laşê jinikê de belav dibe. Xirabiya herî mezin ji bo jinekê ew e ku dwema ku li hemberê xwe jineke din bibîne. Gotinên kilamê behsa vê yekê dikin. Naxwazim dirêj bikim, di vir de dibirim: Kilama ku Rojda bi Şakiro re duet dike, kilama bi navê “Wey Dil” bi heman awayî mirov dikare analîz bike.

Rojda heta îro bêyî ku dengê xwe bike wek dengê mêran, bêyî ku dengê xwe asimîle bike, disitire. Di hunera denbgêjiyê de ev deng bala mirov dikişîne. Di klama bi navê “Sebrê” de ji aliyekî ve ew berdewamiya ku ez di vir de behsa wê dikim heye, ji aliyê din ve lorîneke hemdemî tê de heye. Di vê kilamê de mijara ku herî zêde hatiye bikaranîn çûk e; dixwaze bibe çûkek ku cihê miri bizanibe; herwiha dixwaze bibe çûkek ku perê wê şikandiye.

Rojda bi dengê xwe vê çalakiyê davêje cihekî kûr, dibêje ku sebr ne firandin e; dibêje ku êşa bingehîn, sebra bingehîn hertim di dil de cîh digre; kesê ku miriye, bi awayekî din di dil de dijî; cihê ku ew tê de dijî (dil) herwiha sebr e jî. Dema ku kesekî dimire, li ezmanan li wî digerin. Di klama Sebrê de xwediyê mirî, dê û xwişk, ji bo lêgerîna mirî diçin ezmanan. Kesê ku diçe ezmanan bi xwe jî dibe şehîd. Motîfa per di vir de bal dikişîne. Jin ligel ku dizane ezman bilind e jî dîsa difire; xwe dike şehîd.

Di olan de mêr rûdinên: Têkiliya di navbera Yakûb û Yûsif de, wiha ye. Çavên Yakûb kor dibin, ew di cihê xwe de rûdinê; çavên wî bi desmala ku ji kurê wî tê, vedibin. Jin jî li dû kesê ku winda dibin, diçin ezman. İsa diçe ezman, melayket jin in û perrên wan hene...

# Derhênerê fîlmê “Gendelî” bû qurbana gendeliyê!

**Hewlêr (Rûdaw)** – Fîlmê Gendelî ku fîlmê nû yê derhêner Ciwan Bamernî ye, çend roj berê daket sînemayê. Fîlm ji alî şîrketa Action Kurd ve bi butçeyeke 30 hezar dolaran di nava 12 rojan de hatiye amadekirin. Bamernî filmê xwe bi sîstema DVD belav kiriye. Fîlm behsa bikaranîna samana giştî û postê berpirsiyriyê bo berjewendiyên taybet dike.

Derhênerê fîlm Bamernî dibêje ku fîlm bazirganî ye, baweriya min jî bi fîlmên bi vî awayî nayê. Ger min zanîba fîlmê min di dema propaganda hilbijartinan de belav dibe, pir bi tundî dadiketim.“

Derhêner Ciwan Bamernî sedemê hilbijartina mijara gendeliyê jî wiha dibêje: “Gendelî zor e û em bûne qurbaniyên wê. Civaka me niha bûye dû çîn, çînek sûdemend e û desthilat di destê wê de ye û mijûlî komkirina pereyan e. Çîna din a binpêkirî ye ku em jî ser bi wê ne.“ Bi baweriya Bamernî gendelî gihîştiye wê radeyê ku haya ti kesî ji xelkê nemaye, ji kesên ku wek pêşmergeyan destpê kirin û di encam de bûne sermayedar û bazirganên mezin: “Bo min ne pirsgirêk e, em gihane rewşeke bêhêvîtiyê, ger me bikujin dibe destpêka vegera ber bi dîkaktoriyê.“

Yek ji wan fîlmên ku di navbera Wezareta Rewşenbîrî û Ciwan Bamernî de pirsgirêk derxistin fîlmê “Kewa te Çawerê Be“ bû, ku berî zêdeyî dû salan bi butçeya 750 milyon dînaran kar liser hatiye kirin. Dozgerê giştî li dijî fîlm û Wezareta Rewşenbîrî doz vekiririye û di rojnama Mîdya de çend caran li ser vê mijarê hatiye nivîsandin: “Fîlmê min xelas bû, montaja sînemayî li Îranê maye ku bi nêzîka 50 milyonan diqede.“

Ciwan Bamernî diyar dike ku jiber hikûmet hevkariya wî nake, dest bi kişandina fîlmên bazirganî wek Fertene, Telezgeh, Ebey Sînordaş, Copy û Marê Becaş kiriye: “Di îmkana xwe de dibînim wek Arnold Rambo, pêşmergeyan bi dinyayê bidim naskirin, lê bo vêna pere gerek in.“



*Ciwan Bamernî - (Wêne: Rûdaw)*

Bamernî di sala 1964‘an de li Sersingê ji dayik bûye. Ji sala 1984‘an heta 1991’an peşmerge bûye. Bi navên “We Jibîr Nakim 1993, Girdî Pîroz 1999, Kewate Çawerê Be, Xeta Dûbişk û Gendelî 5 fîlman kişandiye. Bi xwe fîlmên xwe montaj dike, dikişîne û senaryo dinivsîne.



Mezher Xaliqî - (Wêne: Rûdaw)

Rêveberê Giştî yê Enstîtuya Kelepûrê Kurdî Mezher Xaliqî:

# "Şerê me şerekî kulturî ye!"

*Xaliqî xebatên çandî wek bingeh û dewlemendiya netewan dinirxîne. Ew dixwaze karê enstîtûya xwe li her çar perçeyên Kurdistanê birêve bibin. Xaliqî radigihîne ku ew karê çandê di sê beşan de dikin: Komkirina materyalan, parastin û pêşvexistin.*

**Silêmanî (Rûdaw)** - Enstituya Kelepûrê Kurdî di sala 2003'an de piştî rûxandina rejîma Baas li Silêmanî hatiye damezrandin. Di sala 2005'an de li Kerkûkê, 2006'an de li Duhokê û li çend bajarokên din şaxên wê hatine vekirin. Hewldidin ku li Hewlêrê jî şaxekî vekin. Niha li her sê parçeyên din ê Kurdistanê nûnerên wan hene. Dixwazin ku li hemû dever û herêmên Kurdistanê çanda kurdî kom bikin û paşê ji di navendekê de arşîv bikin. Heta niha bi kurdiya jêrîn û jorîn nêzîkî 80 pirtûk çap kirine û herwiha 15 berhemên mûzîkê ji derxistine. Di derbarê gelek pirsan de rêveberê giştî yê Enstîtûya Kelepûra Kurdî hêja Mezher Xaliqî bersiva Rûdawê da.

***Armanc û hedefên Enstîtuya Kelepûrê Kurdî ya bingehîn çi ne?***

Amancî enstitut, danani sentereke be nawi arşivi kulturi zareki neteweyiy kurde bo parastin û perepêdani (pêşxistin) kultur û kelepûri kurd. Em arşive le dahatû (pêşeroj) da debêt (divê) roli senteri lêkolinewe û zanyari kulturi zareki kurd bibinêt.

***Ji bo civakekî kelepor çima ew çend giring e?***

Kultur û kelepûri her gelêk le cihan da nasnamey neteweyi ew gele ye. Ême le her parçekey Kurdistan tûşi imperetoriye regezperestekan (nijadperest) bûyin û yekem dijayeti dagirkeran dijayeti legel kultur û ferhengi geli kurd bûwa, boye rê le bikarhênani ziman û dab û nerît û hest û nestman girtûwa. Le ber ewe eger bimanewêt (em bixwazin) wekû neteweyi kurd biminînewe debêt (divê) xaweni ferheng û hest û nesti neteweyi xoman bin. Heke na le naw gelani nawçeke da dihelin (assimile debin).

***Li gorî we kelepora(zargotin) Kurdî divê bi kîjan rê û rêbazan bê berhevkirin û çapkirin?***

Xoşbextane emro teknik û teknoloji, kari komkirdin û tomarkirdin û çap û weşandin asan kirdûwa, belam le layeki dikewe eger destê xwe sivik nekin)le komkirin û parastini û mawey eweman le layen hikumetewe nebêt bo bekarhênani kultur û orf û adetên me bêguman berebere be têperbûni (bihurin) zeman feramoş debêt (ji bir diçe) û kulturi regezi dagirker zal debêt.

***Enstîtûya we di geşedana çanda kurdî de roleke çawa dilîze? Di vê hêlê de xeyala we çi ye?***

Kurdistani başûr tenya beşek le Kurdistan ke detwanin be kurdi bijin boye ême erkeki heri giringman le stûye ke kulturi gelekeman le sê beş da kari li ser bikeyn. Yek; Komkirin, du: Parastin, sê: Geşepêdan. Emê le rasti da ziyatir le biwari komkirin û parastin da kar dekeyn le ber ewe bergiri bikrêt le fewtan û lebirçûnewe, her weha ke dezanin kulturi zareki û dab û nerît eger praktize ya tomar nekrêt nefewtêt, belam le heman kat da le her mercek da kersey (alav, amûr, navgin) perepêdanman (pêşxistin) bo ew kareman kirdûwa, wekû nimûne, şimşali (bilûr) pire şiwanek legel orkestra klasik da kompoz kirdûwa û bilawman kirdûwetewe. Kari geşepêdan kareki akademik û giring e ke tenya be enstitut nakrêt, wekû operay serburdeyeki xoşewisti yan lawikek (klam-beyt) yan nûsinewey mêjûy kurd û sûdwergirtin le teksti lawik û bestekan yan berhemi film û tiyatro le tekste kulturiyekan... Ême le dahatûy nêzik da deçine binay nwê (avahiya nû) ke taybet bo enstitut durist kirawe. Lem binaye da kari geşepêdan dest pê dekeyn be taybet holi nimayiş (nimandin, nişandan) û şano û konsert û stûdyoyi deng û rengman debêt (dibe) ke detwanêt kar asani bikat bo geşepêdani kulturi gelekeman. Ême baweriman eweye detwanin le kulturi dewlemendi gelekeman sûd werbigirin bo be bepêkewejiyaneki aştiyane (hevrajiyaneke aştiyane) û nasini ziyadtiri yekdi, alûgori (danûstandin) sûdbexş kulturi legel gelani nawçeke (herêm) û cihan da.

***Piştî azadbûna perçeyê Başûr, çi gulhertinên mezin di hêla çand û hunerê de çêbûn?***

Ême le Kurdistani başûr bew peri azadi dejin (heta bêji bes azad dijin), belam tenya ême azad nin, belkû (jê bêhtir) hemû kultur û huner û hest û nesteki xeyri kurdiş azad e. Bêguman erki ême zor giran e, debêt kulturi Baas û ew kulturey ke dijayeti kulturi ciyawaz dekat bisrînewe (ji holê rakin), le heman da berberekani bikeyn le kulturi wilatani dike ke netwanet zal (serdest) bêt be ser kulturi gelekeman. Ême agahdari ewey, katêk azadi bo yekemcar dête wilatewe hendê (hindek) şiti napêwist legel dêt. Boye yarmetiy ziyatiri hawwilatiyani dilsoz le her şwêni Kurdistan pêwist e bo pêkhênani em arşive neteweyiye û geşepêdani le layen hemû hunermendan û şarezayan û nûseran wekû erkeki neteweyi. Prosey (pêvajo) rizgari kurdistani başûr le proseyeki azadi Iraq û le nêwan komelêk şik û guman û le pir da (ji nişkê va) hate di (pêk hat) w geli kurd, be taybet geli başûr amadekari bo nekirdibû boye kereseý pêwisti nebû bo em destkewte mêjûyiye, le ber ewe proseyeki dijwar têperand (borand) û jêrxani wilateki kurdi damezrandûwe ke debêt be hawkari hemelayeneyi (pirali) kulturi parçekani dikey Kurdistan hebêt ta ku (da ku) yekiti kulturi û le encamda yekiti neteweyiman biparêzin.

***Gelo saziyên çandî yên li Başûr heta çi radeyê dikarin çanda kurdî biparêzin û pêşkêş bikin? Di vê hêlê de çi dikeve ser milê wan?***

Be rasti debêt (divê) hemûman bizanin şeri ême şereki kulturi û bergirikirdin le twandinewey (helin, assimilasyon) neteweyek bûwe. Em şere, ke le dabeşkirdini Kurdistan bo yekemcar le Şeri Çaldiran ke 500 sal lemewber destpê kirdûwe, tenya be Enstitut Kelepûri Kurd le Kurdistani başûr nakrêt. Be taybet be hoy bergirikirdini kulturi le sê parçeyekey dikey Kurdistan kareki asan niye...belam ême sereray (tevi, serbari) em tenganeye tiwaniwmane (me kari) le hemû parçekan da kesani dilsoz û kulturnasi kurd peyda biken û hawkariman deken û arşivekeman dewlemend kirawe (hatiye kirin). Belam be hiç şêweyek kafi niye û debêt herewezîyeki (zibare) ferhengi û neteweyi le hemû parçekan da dest pê bikeyn pêş lebirçûnewe û fewtani kelepûrekeman tomar bikeyn.

***Li Başûr bala ciwanan çiqasî li ser çanda kurdî ye?***

Ême le Kurdistani başûr xaweni cileki (nifş) gencin ke tecrûbey rabirdûy kurdyan nediwe û em cile cili satelayt û internet in, bêguman kulturi be hêzi bêgane (biyanî) be taybet imperetoriye dagirkerekan kari têda kirdûn. Le layêki dikeşewe ême wekû hikumeti Kurdistan nemantiwaniwa (me nekariye) pêwistiye kulturiye neteweyiyekanman bem cile rabigihinin boye hikumeti Herêm debêt siyaseti ciddi bo perepêdani ferhengi neteweman bigritê ber, be taybet le şarezayan û kesayetiye ferhengi û huneriyekani parçekani dikey Kurdistan sûd werbigirêt.

***Ji bo ku çand û hunera kurdî di dinyayê de deng vede jê re kîjan gav pêwîst in?***

Komelgay cihani tinûy (ti, têhniyê) kulturi gelanitire. Êmey kurd her çend wilatekeman dewlemend û be pêz û bereket e (bi xêr û ber e), kulturişman her weha dewlemende, belam debêt ême em kulture be şêwey emroji/iroyin, amade bikeyn û pêşkeşi gelani dikey bikeyn. Bo nimûne, dewa û dermani kurdi yan xwardin yan huneri helperkê (govend) û gorani yan ji cil û berg yan cori adap û taqalit (orf û adet)... Hemû ew dab û neritaney ke taybetmendi geli kurd e.

***Gelek caran tê rexnekirin ku çand û mûzîka kurdî li Başûr gelekî di bin bandora çanda ereban de maye. Gelo rastiya vê meselê çi ye li gorî we?***

Min elêm tenya karigeri muzikî erebi niye belkû (jê pê ve) farisi û turkiş le cili gencekanman da heye... Hokari (sedem) le derecey yekemda degerêtewe bo kembûni muzikari baş û berhemi reseni kurdi, eger muzikari be agaman (hişyar, zana) bibûwaya, wilami (bersiv) pêwistiyekani imroji law û gencekanmani bidayetewe bêguman kemtir be lay muziki nakurdi deçûn. Herweha nebûni plani hestyari le layen desthelati berpirs le kar û bari huner da dewri (rol) xoy be negatîf biniwe.

***Gelo çanda kurd û ereban li Başûr çendî tevlihev bûye? Sinorên her du çandan ji ku destpê dike û ji hev vediqete?***

Huneri reseni kurdi le bakuri Kurdistan hem le layen xelk û hem layen medyayi kurdiyewe bayexi (giringî) ziyatiri pê dirawe û resenayeti ziyatire... Belam le birtan neçêt muzikarekani ême le zanko (zaningeh) fars û turk û ereb da fêri muzik debin û binemayi zanisti taybet be muziki kurdiyan niye. Ême debêt taybetmendiyekani muziki kurdi binasin, dirasey bikeyn (lêkolin û lêgerin) û le zankokanman her wekû mêjû û edeb kurd û Kurdistan bixwênin ta ku bitwanin le têkelbûn legel muziki ereb û tirk û fars biparêzin. Ême ta ew katey ke taybetmendiye huneriyekanman be şêweyi zanisti nenasin û dirasey nekeyn û morki xoman nedozinewe natwanin muziki xoman le karigeri muziki nawçeke biparêzin. Enstitut Kelepûri Kurd hemû ew kerese û dokûmentane ko (kom) dekatewe ke le dûwaroj da şarezayani kurd le her parçeki da bitwanin çarçowe û taybetmendiyekani her kam le biwarekani xoyan bidozinewe û be şêweyeki zanisti be geli kurd û xelkekanitiri cihan pêşkeşi bikin. Başûri Kurdistan be hoy (ji ber) deyan sal şer û enfal û kimyabaranewe zori le serwet û samani kelepûri xoy le bir çûwetewe yan kemreng bûwetewe, meger (ji bili, ne tê da) le bari edeb û nûsini tekst û şi'iri kurdi da.

***Plan û projeyên we yên pêşerojê çi ne?***

Enstitut sentereki neteweyi azad e û be yarmeti xelk û hikumeti Herêm û derameti (dahat) xoy be rêwe deçêt. Em organizasyone bo sûd û ticaret niye û arşivi zanisti ye derbarey kultur û kelepûri kurd û debêt le layen hemû kurdêkewe palpişti (piştgiri) bikrêt bo dewlemendkirdini, debêt hemûman hawkari bikeyn ta em sentere dewlemend bêt. Zor lew materyalane le lay xelk le malan, le kitêbxane şexsiyekan û le naw dil û desti hawwilatiyane ke debêt biguwazrêtewe (bêne veguhastin) bo em arşive neteweyiye. Boye debêt medyayi kurdi ew zemîne fikriye amade bikat ke hawwilatiyan le damezrandini binemakani komelgay kurdiman beşdari biken û nasnamey neteweyiman biçespênin.



Mezher Xaliqî bi derhênerê sînemayê Behman Gobadî re... - (Wêne: Rûdaw)

# "Dayikbûyin û nivîskarî wek hev in"

RÛKEN ÖZMEN

**Amed (Rûdaw)** - Helbest xwişka pexşanê, pêxşan rêhevala helbestê ye. Bi pêjnê birandar, ji hisên giyana beteli; ji kela dil têne coşê; difirin û çiroka me ya jiyanê li bedena asoyê dineqişinin. Em ji niviskar Yıldız Çakar dipirsin û ew hunandina vê neqşê ji me re rawe dike.

***Bandora çibû ku hûn û pênûsê kirine rêhevalên jinê?***

Her kurdek romaneke wê/wî heye. Bêguman romana min û malbata min ji heye. Di sala 1994'an de ji ber sedemên siyasi malbata min koçî Mêrsinê kir. Êş, bêrîkirin û xeribiyê, helbest bi min da dinivisandin, ji ber ku dayika min ji min re bûbû meraq.

***Em êdî jinan, di nav siyasetê û li ser dikê dibînin, lê yên dinvisin pir kêm in bi taybetî yên ku bi kurdî dinvisin... Sedema vê çi ye?***

Belê mirov dikare bêje jin beriya 1990'an li ser dikê û di nav siyasetê de tunebûn. Bandora tekoşîna azadiyê rê li jinê vekir û îro jin di nav civakê de xwediyê rolek e. Ger ev tekoşîn tunebûya niha wê jin ji li tu qadan tunebûna. Ji ber ku bi sedsalan asimilasyona li ser kurdan û piranî ji ya li ser jinan, jinê tunekiribû. Ji vê tunekirinê afirandineke pêk hat û jin hêdî hêdî bi ser xwe ve hat. Lê belê jin hîn ji ne li qada xwe ye. Ger îro li ser dike ango di siyasetê de cih girtiye lê hîn reng û zimanê xwe bi destnexistiye. Ji lewra di ware nivisandinê de ji dikarim bêjim çar an pênç kes (li bakûr) hene ku bi wejeyê ve alaqadar dibin. Mixabin li ber van çar-pênç kesan ji gelek astengiyên mezin hene; Wekî asimlasyon, ol, mantalitaya feodali...

***Dema ku mêr hizir û fikra xwe di derbarê jinê de bibêje an binivisê, lê ku jin bi xwe raman û hestê xwe derbir bike, wê ferqek çawa diyar bibe?***

Mixabin em hîn di civaka mêran de dijîn. Lewre mêr dikare her tişt bêje, bike! Jê re ne şerm e û ne ji qedexe ye. Dema ku jin qala hestên xwe bike an ji daxwazên dilê xwe rave bike (bo mêran) tê şermkirin, şermezarkirin, qedexekirin... An ji bi çaveke din li jinê tê nihêrtin. Çend minakên balkeş hatine ditin ku jinek dema fikrên xwe bo mêrek tîne ziman dubendiyên asayî derketine holê. Ji xwe armanca me ya ya herî giring ew e ku divê jin zimanê xwe di wejeyê de bikarbine. Giyana xwe, fikrên xwe ango jin divê karibe qala xwe bi zimanê jinê bike. Zimanê nivisê ji niha di bin çewisandina mêran de ye. Ger jin ji bin bandora vê mantaliteyê karibe xwe xilas bike wê zimanê jinê û astengiyên din ji ji hole rabe. Wê çaxê lingên şikestî yê wejeyê wê bicebire.

***Hûn helbest û pêxşanan herduyan jî dinvisin. Bêhtir bi kijanê hestên xwe tînin ziman?***

Tenê dikarim bêjim pexşan bo min tişteke din e. Xwe di pexşanê de dibinim. Bi xwe ne helbestvan im, lê dikarim bêjim pexşan bo min pirtir giring e û niha ji bo pexşanê dixebitim.

***Jiyana Amedê hest û hêzeki çawea li pênûsa we bardike?***

Ji xwe Amed bi sere xwe romanek e, helbestek e an ji çîrokek ku wê tu carî bi dawî nebe. Jiyana Amedê ji bi sere xwe tiştek e din e. Amed nayê qal kirin divê were jiyandin. Ger ev jin di dilê we de bijî, pênûs wê bi xwe rêya xwe bibîne. Her ku sirgunî bi para min ketibû, çiqas ji Amedê dûr diketim ewqas jî nêzik dibûm. Hesteke nepen û hêzeke mezin dibe barê pênûsa min. Ger pênûs ji heqê xwe derbikeve...

***Dayîktî; zarok û pênûs tabloyeki bi çi awayî derdixe holê?***

Dayikbûyin û nivîskarî wek hev in. Ji ber ku çawa zarokek neh meh di zikê dayika xwe de mezin dibe, zindî dibe, niviskarek dema nivisek dinivise ewil di dilê xwe de mezin dike, zindî dike, dide jiyandin û piştre zayin pêk tê. Her du ji ya mirov bixwe ye û ya ji ne ya mirov e. Di dayiktî û nivîskariyê de ego heye. Ev dikare tenê ya ji bo mirov be ya ji bo jiyanê be, civak û hwd. Ji bo dayikek zarok dilê wê bi xwe ye, ji bo nivîskarek penûs û berhem dilê wê/wî ye.

***Çapkirina pirtûkan û belavkirina wan, di nava me de niha çiqasî profesyonel e?***

Çapkirina pirtûkan û belavkirina wan di nav deh salên dawîn de hatiye asteki. Çewisandinên cûr be cûr li ber weşandina pirtûkên kurdî bi salan dom kir. Ev du sê salên dawîn de ji astengiyên ku ji aliyê dewletê ve dihat kirin bi gavên siyasî ve hinek be ji rawestiya. Lê belê hîn ji gelek astengî (li ber zimanê kurdî) dom dike. Ev aliyekî mijarê ye. Aliyê din ji ji aliyê weşanxane û saziyên belavkirinê ye. Niha gelek weşanxane hene ku piraniyên wan ne profesyonel in. Bo çi? Ji ber ku hinek weşanxane tenê pirtûkên xwe çap dikin, bo xwe belav dikin. Hinek çapxane tenê ji bo du sê kesên ku hatine naskirin dixebitin. Hinek çapxane li dû hesabên aborî û projeyan in. Lê belê ji bilî van ên ku ji bo wejeyê dixebitin jî hene ku derfetên wan ji gelek kêm in, ji bo çapkirinê û ji bo belavkirinê ji. Saziyeke belevkirinê ya kurdan tuneye. An ji ji bo pirtûkek bandrol sitandin divê ne pirsgirek be. Lê hîn ji pirsgirekên bi vî rengî hene. Bo vê ez nikarim bêjim profesyoneli heye. Dîsa ji, yek du weşanxane ji yên din çêtiin ku ev ji bi aboriya wan ve girêdayî ye.

***Li pêşerojê emê çi ji pênûsa we bixwînin?***

Niha xebateke min û ya Amed Tigris heye. Ez bawerim wê havina bê çap bibe. Ev pirtûk wê bi şêweya xwe bi agahiyên xwe di nav weşanên kurdan de wê yekemîn be û xebateke min a pexşanî heye wê ew ji havînê bê çapkirin.

*Yıldır Çakar - (Wêne: Rûdaw)*

**Yıldız Çakar**

*Di sala 1978'an de li Amedê ji dayikbûye. Xwendina xwe heta lîsê li Amedê kûta kir. Piştre ji ber hin sedeman sê caran sê zaningeh nivco hiştin. Di vê navberê de di Rojnameya Ülkede Gündem, Azadiya Welat û Ajansa Nuçeyan ya Dicleyê de karê rojnamegerî û editoriyê kir.*

*Di sala 2003'an û şûnde bi wejeyê ve alaqadar dibe. Di sala 2004'an de bi pirtukên bi navê 'Goristana Stêrkan' ji weşanên Elma ku ji helbest û pexşan pêkdihat hat çabkirin. Pirtukekeke wê ya din ji bi navê 'Ala' ji aliyê Yekitiya Nivîskarên Dûhokê ve hatiye çapkirin..*

*Beriya helbest û pexşanan gelek çîrok û senaryo nivisandiye. Ji van senaryo û kurte çîrokan sê xelat wergirtine.*

*Niha li Amedê dijî û bi nave Dicle zarokek wê heye.*

# Jin ji bo bedewiyê Whisky vedixwin!

ARÎ OSMAN



**Hewlêr (Rûdaw)** – Bo Viyan tu peyv ji wê ya xweştir tune ku xortekî jê re bêje: 'Rûyê te gelek ciwan e, yan çavên te gelek ciwan in.' Hilbet bê ku kurik bizane nehêniya ciwaniya wê di çi de ye. Herçiqasî Viyan dilniya ye zererên vexwarina Whisky bo keçeke wek wê zêdetir in, lê dibêje: "Rûyê min ciwan dibe, eger kurek ji min re bêje rûyê te ciwan e."

Viyan R. ku li Silêmaniyê xwendekara zaningehê ye wek gelek keçên din fahmkiriye ku vexwarina whisky rûyê jinan ciwan dike; lewma hawara xwe gihandiye vexwarina wê. Herçiqasî ew keç dizanin ku xirabiyên vexwarina wê ji başiyên wê bêhtir in ji lê ya giring ew e ku rûyên wan xweşik bibe, tendirustî ne giring e.

Viyan ev dû sal in Whisky vedixwe û dibêje: "Di destpêkê de ji bav û birayê xwe fêrî vexwarina birayê bûm, piştre hevaleke min, li min şîret kir ku whisky vexwim da ku rûyê min ciwan bibe, dema çûm mal min di cih de botleke whisky a Chevas vexwar, min nizanîbû ewqasî giran e û zû ji hiş ketim." Viyan jiber şîreta hevalê xwe hê whisky bi berdewamî vedixwe: "Min nizanîbû bi vexwarina whisky re ezê ewqasî xweşik bibim, yan minê ji zaroktiyê ve vexwara. Dema diçim cihekî piraniya xortan berê xwe didin min û ji min re dibên çavên te ciwan in, hinarikên te ciwan in." Lê her çawa be Viyan dilgiran e ku nikare li gor hêza xwe whisky vexwe: "Jiber doktor got çê nabe tu zêde vewxî, bo laş xirab e."

Hêvî, xwendekara zaningeha Selaheddînê bi rêya keçeke hevala xwe fêrî vexwarina whisky bûye û dibêje: "Hevala min got bo bihnvedanê whisky vexwe lê piştre min naskir ku ji xeynî ku psiologiya min aram dike herwiha rûyê min ji ciwan dike lewre bi berdewamî vedixwim."

Hêvî aciz e ku nikare li hemû deveran an di hemû wextan de vexwe jiber ku eşkere be wê bextreşî biqewime: "Mal nizane ku whisky vedixwim, ger bizanin yekser min dikujin; lê bi tenê dema mala me razayî bin ez vedixwim."

Doktor amajê dikin ku vexwarina whisky dibe sedemê zêdebûna jimareke nexweşiyan, nemaze qansera kezeb, dev, lêv û pankreas. Pisporê nexweşiyên hinavan Dr. Umer Surçî bo Rûdawê ragihand: "Vexwarina whisky ji aliyê jinan ve kareki xirab e, dibe ku rûyê wan ciwan bike lê di pêşerojê de gelek nexweşiyan bo wan peyde dike; wek şêrpenceya kezeb, dev, lêv û pankreas."

Surçî da zanin ku vexwarina whiskyê bêhtir zererê dide jinên avis: "Biveyê li ser zarok dirust dike û heye ku bibe sedemê jicih derketin an dirustbûna kis di nava zarok de. Wekî din tu çavkaniyeke tendirustî behsa vexwarina whisky bo ciwaniya laşê mirov nekiriye."


Serokê Yekmalê İsmet Demir - (Wêne: Rûdaw)




## Serokê Yekmalê İsmet Demir:
# Malbatên kurd doza zimanê xwe nakin!

*İsmet Demir helwesta malbatên kurd di derbarê zimanê kurdî de rexne dike û ji malbatan daxwaz dike ku di mal de perwerda kurdî bidin zarokên xwe. Demir, bibîrtîne ku kurdî di dibistanên Almanya de wek zimanê fermî nayê qebûlkirin û sedemê vê jî bi yasayê dewletê ve û bi qelsiya kurdan ve girê dide.*

**Berlin (Rûdaw)** - Yekitiya malbatên Kurdistanê li Berlin (Yekmal), di sala 1993'an de ji aliyê dê û bavên kurd ve li Berlinê hatiye avakirin. Gelek avakarên Yekmalê berê di avakirina komeleya malbatên tirkan de jî cih girtine; lê ji ber ku malbatên tirk rê nedane wan ku ew di bin vê komeleyê de koma malbatên kurd ava bikin, loma ew ji jê veqetiyane û ji xwe re Yekmal damezirandine. Armanca Yekmalê ya sereke ew e ku pirsgirekên malbatên kurd di warê perwerdehî, dibistan û ziman de çareser bike, malbatên kurd nêzikî hevûdu bike û integreyî civaka awropayê bike. Her wiha di bin banê Yekmalê de gelek kursên wekî kurdî, almanî, kompûter û hwd. hene.

Di derbarê gelek pirsên din de serokê Yekmalê İsmet Demir ji Rûdawê re axivi:

Demir, ji Rihayê ye û ev zêdetirî sih sal e ku li Berlinê dijî. Da zanin ku ji ber peyva "Kurdistan" ya ku di yekmalê de cî girtiye, berê bi tirkan re şerê bûrokratik kirine, "Hingê malbat û civaka tirk ya vir, bi her awayî li dijî peyva Kurdistanê derdiket. Dixwestin me wekî malbatên tirk bi nav bikin. Hê jî li dijî me derdikevin. Mixabin mejiyê wan ê faşist li vir jî li ewropayê jî wekî xwe dimîne. Carina xwe sist dikin û dibêjin bila "kurd" be, lê wê ev peyva Kurdistanê her di nava Yekmalê bimîne; ji ber ku navê welatê me Kurdistan e..."

### Kurd li vir wekî tirk, ereb û faris tênê hesibandin

Demir di berdewamiya axftina xwe de dibêje ku imana tirkan ji peyva Kurdistanê diçe, „Lê her çi be, em kêfxweş in ku li gorî imkanên xwe destê alikariyê digihînin malbatên kurd..." Lê zêde dike ku pirsgirêka malbatên kurd yê herî mezin ew e ku hê jî civaka kurd wekî kurd li Almanyayê bi fermî nehatiye pejirandin, „Kurd li vir wekî tirk, ereb û faris têne hesibandin, lê ne wekî kurd.

Wekî din em bi hejmarên fermî nizanin bê ka çend kurd li almanyayê dijîn; helbet dema ku ev hejmar bi fermî derkeve wê hingê barê integrasyona malbatên kurd jî bi fermî bikeve stûyê komele û rêxistinên wekî me kurd. Dema hejmarek wisa tunebe ji dest û lingê me tê grêdan. Li hêla din jî partî û rêxistinên kurd bi çaveki îdeolojîk nêzikahiyê li malbatên kurd dikin. Bi vî rengî jî tu tişt çareser nabe..."

İsmet Demir balê dikişîne ser ku mixabin heta niha jî zimanê kurdî li dibistanên Berlinê bi fermî nehatiye pejirandin, "Pirsgirêka herî mezin jî ji ziman dertê. Malbatên ku bi zimanê xwe perwerde nebe, ji sohbetê bigire heta her tiştê wê malbatê parçe parçe dibe..."

### Malbatên kurd ji bo zimanê xwe seferber nabin

Sedema ku zimanê kurdî li dibistanan bi fermî nayê pejirandin jî, ji me re wisa rave dike, "Mixabin qanûn destûr dide vê yekê, lê malbatên kurd ji bo zimanê xwe seferber nabin, xwe sersar dikin. Dema em bi malbatan re yekoyek diaxivin, hemû dibêjin erê, serçavan, lê komî ser hev nabin û mixabin doza zimanê xwe nakin. Malbatên kurd di hêla rewşenbiriya çand û zimanê xwe de gelekî qels û lawaz in, giringiya ziman qet nizanin, gelek ji wan li vir jî bi tirkî jiyana xwe didominin, asimilasyona dewleta tirk li vir jî dewam dike, lê ew ji xwe bi destê xwe dihelinin..."

Demir dû re destnîşan dike ku heke zarokên kurd li dibistanan xwe wekî kurd bidin naskirin ji wan re pirsgirêk dertên, "Hema dema ku dibêjin em "kurd" in, êdî li dibistanê li cem hevalên wan ên tirk hevaltiya wan xira dibe, nikarin bi hev re bilîzin, hevaltiyê bikin. Ji bo vê yekê malbatên kurd di dibistanan de xwe sist dikin û paş ve dikişînin û doza ziman û hebûna xwe nakin. Jixwe di dibistanan de heke ku şeş heft kurd bên cem hev, êdî ew dibin "kurd", bê xof û bê tirs. Êdî dikarin li her derî jî bêjin em kurd in. A din jî, malbatên kurd ti hêviyekî nabînin ku zimanê kurdî wê di pêşerojê de jî zarokê wan re bibe tiştek..."

Di vir de dixwaze behsa civîneka bi malbatan re bi me re parve bike, "Gelek kes tevlî wê civînê bûn, hemû jî kêfxweş bûn, ji me re spas kirin, giringiya ziman fêm kirin, lê mixabin dema diçin malê her tiştî jî bîr dikin û ziman piştguh dikin..."

Li ser pirsa me, Demir dide diyarkirin ku komeleyên kurd ên li Berlinê li hev nacivin û kar û xebatên xwe tecrûbeyên xwe pevnaguherînin, „Kes jî kesî tiştek napirse. Kesek ji komeleya din re pêşniyarekî xwe nabêje. Her komele bi tena serê xwe hin tiştan dike û gelek caran haya kurdekî ji jê çênabe..."

Demir rexneyê li komeleya xwe jî dike û dibêje ku gelek malbat haya wan ji Yekmalê tune, „Lewma gelek nizanin bê em dikarin alikariyê bi wan ji bikin. Lê em êdî hewl didin ku xwe bigihînin gelek malbatan. Bi riya we em disa ji dibêjin, deriyê me ji her kurdekî re vekiriye û dikarin hemû problemên xwe yên malbatî bi me re parve bikin. Bi ya min çare ji her tiştî re heye..."

### Kurd di mal de serê hev jî bişkênin naxwazin serî li tu derî bidin

Li ser pirsgirêkên malbatên kurdan ji balê dikişîne ku kurd di mal de serê hev jî bişkênin naxwazin serî li tu derî bidin, „Bi tu awayî naxwazin ku ciranê wan jî bi wan bihese. Mesele berî çendekê xanimek hat serî li me da. Mêrê wê jî derve dimîne, xumarê dilîze, xirabiyan dike û hwd. Lê kêm caran kesên wisa tên. Helbet em dizanin ku bûyerên wisa gelek li Berlinê li nav malbatên kurdan diqewimin. Lê kes serî ne polis, ne mehkeme ne jî avukatekî dide, yanî kêm kes ha..."

Demir li ser zewaca ciwanên kurd jî gotinê disa dibe ser nasnameyê, "Helbet gelek ciwanên kurd nasnameya xwe ya kurdî li her derî aşkere dikin. Lê di dema zewicandinê de goh didin dilê xwe. Ciwan li vir azad mezin dibin..."

### Gelek kurd hene li vir jî heft heşt zarokan çêdikin

Em jê dipirsin ka gelo li vir jî malbatên kurdan pir zarokan çêdikin an na, behsa cudahiyê ya perwerdehiya malbatan dike, "Li gorî her malbatê diguhere bi rastî, lê gelek kurd hene li vir jî heft heşt zarokan çêdikin. Pismamekî min heye li vir zewiciye, lê neh zarokên wî hene..."

Bi vê ve grêdayî em kuştinên namûsê yên kurdan jî jî Demir dipirsin, ji me re behsa muhafazakariya civaka kurd dike, "Mixabin civaka kurd hê jî qalikê xwe yê hişk neşikandiye. Hê jî pir girtiye; teng e. Têkiliyên wan bi tenê di nav cemaeta wan de diçin û tên. Ji kulturên din re ne zêde vekiriye. Wekî çanda alman ya italyan ne vekiriye. Li hêla din jî li Berlinê jî çandên din di vê hêlê zêde tesîrê li van kurdan nake ku xwe piçekî biguherînin..."

Serokê Yekmalê Demir di dawiyê de daxwaz ji malbatên kurd dike ku ew kurdî fêrî zarokên xwe bikin, "Heke ku ziman tunebe, nasname jî winda dibe, her tişt winda dibe. Tek çareya me ew e ku em wekî malbatên kurd wekî civaka kurd di dora zimanê kurdî de nasnameya xwe li hemû dinyayê bidine pejirandin..."



Tewanbar hatine girtin lê parêzer ji dadgehê daxwaza azadkirina bi kefaletê dike.

# Nîjadperestan êrişî du kurdan kirin

**London (Rûdaw)** - Bi sedema êrişkirina ser dû penaberên kurd, dadgeheke Brîtanî cezayê zindanê ji sê brîtaniyan re birî. Ew du penaberên kurd di rêya vegera malê de leqayê êrîşa sê tawanbaran hatibûn. Erişkaran guh lê bû ku ew bi kurdî diaxivin, êrişî wan kirin û li wan xistin.

Dadwerê dadgehê, bi tawana lêdan û êrişa regezperestiyê sê tawanbarên bi navê Thomas Kramp, Daniel Moran û Karel Marchent biryara zindanikirinê xwest. Dadwerê dozê tawanbar hişyarkirin û got, "bi sedema encama tawana ji wê şêweyê, wê li we sezayê zindanê bê birin."

Ji egera wê lêdanê, herdu kurdên Başûrê Kurdistanê, Rêbaz Qadir û Casim Elî bi giranî brîndar bibûn. Rêbazî wan du caran hewildabûn peywendiyê bi polisên hawarê bikin, lê wan nekarî bû.

Tê çaverêkirin ku despêka sala dahatû, biryara wan sê tawanbaran were pêkanîn. Lê parêzerê tawanbarekî ragihand ku pêwist e dadwer wan sê tawanbar bi kefalet azad bike, ji ber ku kesê ji wan derbasbûyekî xirab nîne.

Parêzerê Rêbaz Qadir, serhatiya bûyera ku li roja 24 Nîsana isal qewmîbû, ji dadgehê re vegêra. Rêbaz, Casim û hevala Rêbazî vedigeriyan malê, dema sê tawanbaran rê li wan girtin, xeber dan wan, ji wan re gotin vegerin welatê xwe û paşî li wan xistin. Parêzerî ew yek jî diyarkir ku bi şeq û zillehan li qurbaniyan hatiye xistin û serûçavên wan şîn bûne.

# “Dixwazim vê dukanê li Amed û Dêrsimê jî vekim”

*Li Almanyayê çar dukanên Musa Cengiz hene; ew di van dukanan de mifte û mohran çêdike, sol û çenteyan didirû, kupa û pênûsan dinexşîne û wêneyan dikişîne. Cengiz niha daxwaz dike ku li Amed û Dersimê jî heman dukanî veke.*

**Wattenscheid (Rûdaw)** - Musa Cengiz ev bist sal in li Almanya karekî ku ji her malê re pêdivê, dike. Mifteyan çêdike, solên qetandî didirû, li ser deriyan navan dinivisîne, mohran çêdike, çente û cuzdanan temîr dike, kûpayan dixemilîne û li ser wan navan dinivisîne.

Li her bajarên Almanya, li her sûkê çavên mirov bi van dukanan dikeve: Schlüssel und Schuh reperatur. Yanî temîra mifte û solan. Musa Cengiz dema ku di sala 1989'an de tê Almanya li cem firmayeke Alman dest bi vî karî dike. Li wir 6 sal dixebite û paşê li Wattenscheidê, nêzikê Bochumê dukana xwe vedike. Ew niha xwediyê 4 dukanên wiha ye. Em jê dipirsin ka ew di van dukanan de çi kar dike. “Beriya hertiştî em mifteyan çêdikin. Muşterî mifteki kevin tînin cem me û em jê re li gor xwesteka wî mifteyan çêdikin. Hin mifte hene ku jê re destûra taybet divê. Divê xwediyê xanî bi xwe were, an jî bi kaxizekî fermî îmzeya wî tê de hebe. Mifteyên din bê destûr em di deqekî de çêdikin.” Me dibe paşiya dukanê û solên ku di refan de hatine rêzkirin nîşan dide. “Ji bilî mifteyan muşterî solên xwe tînin, em teng dikin, fireh dikin, benê wê kin û dirêj dikin, pîne dikin. Herwiha gelek jin çenteyan tînin û tê de qul hebe em wî digrin, didirûn uhwd.”

Lê karê ku ew dikin ne tenê ev in. Musa Cengiz ji aliyekî ve bi muşteriyan re mijûl dibe, ji aliyê din ve behsa karê xwe dike. Di destê wî de kupayekî heye û wiha diaxife: “Em li ser van kupayan navan dinivsînin, li gor xwestekê çend rêz nivîs, diyarî... Herwiha li ser pênûsên diyarkirî jî navan dinivsînin. Li ser deriyan nivîsandina navê malbatê jî karê me ye.”

Kesên ku mifteya xwe di derî de, li hundir jibîrkiribin, bi rêya telefonê bangê wî dikin. Ev karekî taybet e, bihaya wî zêdetir e. Lê carekî jinekê telefon dike û dibêje ku tevlî zaroka xwe ya biçûk ew li derve maye, lê pereyê wê ji tune ku bide. “Roja yekşemê bû. Ez rojên yekşemê bi zarokên xwe re derbas dikim. Lê dema ku jinikê got ez tevî zaroka xwe li der mame û perê min tune, ez bi rê ketim çûm û min alîkariya wê kir. Ew roj dilê min bi hestan tije bû û bi wê alîkariya bê pere ez gelek kêfxweş bûm. Hertişt bi pere nayê pîvandin.”

Ji bilî vê dukanê, Musa Cengiz xwediyê sê dukanên din e jî. Yek li Herne, yek li Essen-Kray û yek jî li navenda Essenê. Di her dukanekî de du mirov dixebitin. Wek ku Cengiz radigihîne ji bo vekirina van dukanan diploma lazim nake. “Berê dixwestin, lê niha ne hewce ye. Tenê li xebatê mêzedikin, eger çend salan te vî karî kiribe, dikarî dukanek wiha vekî.” Em jê dipirsin ka gelo debara van dukanan niha çawa ye? Bersiva wî wiha ye. “Di hêla mifteyan de tiştekî nehatiye guhertin. Hê jî xelk tê û mifteyan çêdike; lê karê solan ne wek berê ye. Êdî gelek solên erzan tên firotin, dema ku ew sol kevin dibe, diçin yeka din distînin, kes nayîne û pîne nake.”


*Musa Cengiz li dukana xwe ya Wattenscheidê.* *(Wêne: Rûdaw)*

Lê ew bal dikişîne ser pêşketinên teknîkî di hêla derî û mifteyên nû de. “Em weke berê mifteyên otomobîlan çênakin. Jiber kû mifteyên nû ji aliyê fîrmeyan ve tên çêkirin û hemû jî ji dûr vê bi kumanda nin. Em tenê pîlên wan mifteyan difroşin.”

Pêşketineke din jî di hêla deriyan de ye. Cengiz wiha radigihîne. “Gelek fîrme, avahiyên mezin, xaniyên taybet weke berê ne bi mifteyan deriyên xwe digirin. Bi alarmê û bi kartê. Kartên bi chips. Ev yek jî karê me têkdibin.”

Armancek Musa Cengiz heye ku berê xwe bide Kurdistanê. Bi taybetî jî Dêrsim û Amedê. Em sedemê vê yekê jê dipirsin. “Ez li Dêrsimê hatime dinyayê, Amed jî navenda hemû kurdan e, bajarê kurdan ê herî mezin e.” Ew çend caran çûye Dêrsim û Amedê. Wek radigihîne li wan deran dukanên wiha tune ne.

---

Serpêhatiya jineke kurd a Cihû

# Lea xewna vegera Kurdistanê dibîne


*Komeke cihû di dema ayîna olî de...*

*Lea Megali jineke kurd a cihû ye; li Kurdistanê hatiye dinyayê, malbatê ji wir koçî Îsrailê kiriye. Lea niha li Amerikayê dijî û hem bêriya axa bav û kalan kiriye, hem jî bêriya xwarinên kurdan...*

**Amerîka (Rûdaw)** - Lea Megali weke keseke bicoş û dilxweş tê pêşçavan. Sedema vê yekê jî dibe ji ber wê yekê be ku navhatî weke ektor û semakar rahênan kirine. Niha Lea li Eyaleta Maryland a Amerîkî, li bajarê Baltimore dijî. Çîroka Lea ji Rojhilatê Kurdistanê destpêdike ku ew li wir ji dayikbûye û piştî demekê li Îsraîlê jiyaye. Lea ku navê wê yê rastî Etles e, ew yek eşkerekir ku ew ji malbateke kurd a cihû li bajarokê Rojhilatê Kurdistanê, Urmiyê ji dayikbûye. Ew dibêje ku ji dayikbûna wê di malê de, lê ne li nexweşxaneyê. Malbata wê çaverêya ji dayikbûna xortekî dikirin, dema diyarbû ku keç e, malbat dilxweş nebûn û keçeke din jî li wan zêdebû.

Dayika Lea yê ku navê wê Meryem e, di temenê 17 salî de şûkiribû û bavê wê ku navê wî Yazakêl bû, bazirganekî bêjin (jinmirî) bû. 4 zarokên wî ji jina yekem hebûn (kurek û 3 keç), ew herweha 40 salan ji dayika Lea yê mezintir bû. Lê ew tek derfeta şûkirinê bû ji dayika wê re. Dapîra wê bi vê şêweyê behsa şûkirina keça xwe kir ”Temen ne girînge û xwedê bikra temenê wî 200 sal be, ew bese ku cihûye.”

Li derdora salên 1950'an, ew malbat hat neçarkirin ku beref Îsraîlê birev in. Cihûyên ku ji bo dema 2700 salan li Kurdistanî dijiyan, niha rastî tundûtûjiyê tên û neçardibin qesta dewleta Îsraelê bikin û di encama wê revê de, bavê Lea yê neçar ma heft dukanên xwe bi cîh bihêle.

Ew malbat ji Tirkiyeyê çûn Îsraîlê. Lê piştî salekê li wî welatî, bapîrê Leayê mir. Ew mamê Lea yê di şerê navbera Ereb û Îsraîlê de hat kuştin.

**Malbat kocî Israilê dike**

Dema malbat hat Îsraîlê, Lea zarokeke sava bû. Ew li kampeke penaberiyê di bin çadirekê de dijiyan, ew asêbûbûn û ewqas av û xwarina wan jî tunebû. Malbata wan 11 mehan li wê kampê man û paşî çûne xaniyekî li navçeya Îsraîlê, Hartufê.

Dema ku ew malbat li wê navçeyê man, bavê wê bû şivan û çavdêriya pez û bizinên xelkê wê deverê kir û Lea yê jî alîkariya wî dikir. Vê rewşê heta salên 1970'an domkir. Paşî xelkê wê navçeyê çekek ji bavê Lea yê re kirîn û ew bû zêrevanê wê deverê, ji bo ku ageha wî ji xelkê hebe ku hevsû ”cîran”ên wan ên Ereb êrişî wan nekin.

Bi sedema ku jiyana malbata wê xwecihnebû, şansê xwandina Leayê ne gelek bû. Lê dema ku pirtûkxaneyek li nêzîk navçeya wan vedibe, rasterast Lea diçe wê derê û dest bi xwandinê dike. Paşê ji ber astbilindî û zîrekiyê, Lea ji bo pirtûkxaneyeke mîrî li bajarê Orşelîmê tê şandin û dema li wê pirtukxaneyê pirs ji Leayê dikin ka ew dixwaze di dahatû de bibe çî; Leayê yekser wiha gotiye: ”Ez hezdikim bibim aktor.”

**Kenya, Brezilya ûAmerîka**

Di temenê 21 salî de, Lea bi kurdekî cihû re dizewice û du zarokên wan çêdibin, navên wan dikin ”Asif û Meyan.” Lê bi sedema nebaşiya jiyana wan, Lea ji mêrê xwe cuda dibe û ji bo jiyanê dixebite û dibe mamoste.

Lea û du zarokên xwe diçin Kenyayê û dû salan li wir dimînin. Di sala 1988'an jî diçe Brezîlyayê. Li gor rojnameya Amerîkî The Baltimore Jewish Times di sala 2000'an, de Lea tê Amerîkayê û dibe mamosteya zimanê hubrî, digel vê jî çend helbestên bi zimanê hubrî dinivîsîne û digel çend zarokên cihû wan dike stran.

Tevî vê jî, Leayê herwiha ji bo hînkirina semaya Îsraîlî, kurseke taybetî ji pirtûkên cihû re vekiriye. Peywendiyên wê yên bihêz jî digel penaber ên kurd ên cihû yên Amerîkayê hene û niha kurê wê mijûlî aktoriyê ye, ew li Amerîka beşdarî şanogeriyekê bi navê “Digel viyanê, ji Kurdistanê” dibe.

**Bêriya kifte û dolmeyan kiriye**

Di dema bihênvedanê de, Lea mijûlî amadekirina dokumêntareke taybet a li ser jiyana cihûyan li Kurdistanê ku dakokiyê li ser jiyana xwe ya li Kurdistanê dike û xewnê bi wê rojê ve dibîne ku vegere xaka bav û kalên xwe.

Di dawiyê de Lea dibêje ku ew şanaziyê bi wê yekê dike ku ew cihû ye, herweha şanaziyê bi urf û adetên malbata xwe dike û gelek ji xwarinên kevin ên kurdî yên weke “kifte û dolme” jî hez dike.

Siyasetmederê SPD'ê Sigurd Hauff:

# Divê Tirkiye ji kurdan lêborînê bixwaze

*Hauff dibêje ku rejîma Tirkiyeyê, bi salan li gelê kurd tade û îşkenceyên giran kiriye. Ji bo vê yekê, daxwaz dike ku hikûmeta Tirkiyê divê ji kurdan lêborînê bixwaze û dûre bo çareseriyek siyasî bikeve nava hewldanan. Hauff kurdan rexne dike û dibêje ku bi siyaseta Almanyayê re ne mijûl in.*

**İSMET SİVEREKLİ**

**Berlin (Rûdaw)** - Siyasetmedarê Alman Sigurd Hauff di Partiya Sosyal Demokrat (SPD) de xebata siyasî dimeşîne û wek 'dostê kurdan' tê naskirin. Wî, cara yekem bi awayek fermî Berlinê cejna Newrozê pîroz kiriye. Vê pîrozbahiyê, di dema xwe de, di navbera Tirkiyeyê û Almayayê de rê li ber qeyranek siyasî vekiribû.

Hauff, diyar dike ku dewleta Tirk di pirsgirêka kurd de dewleteke şizofrenîk e û vê nexweşiya xwe heta îro jî diparêze. Hauff dibêje, dewleta Tirk bi destê hikûmeta AKP'ê dixwaze vê pirsgirêks siyasî çareser bikê û ji bo vê jî di nav hewldanê de yê. Lê Hauff van hewldanan bo çareseriyê têr nabînê û dibêje: "Divê Tirkiye ji kurdan lêborînê ji bixwaze."

Hauff, piştî 18 salan cara yekem ji rojnameya me Rûdawê re axifî. Hauff, di axaftina de da zanîn ku, wî di salên 90'î de kurdan naskiriyê û bi wan re Newroza 1992'an li navçeya Spandau a Berlinê, di holên 'Kela Zitadelle' de pîroz kiriyê û ala kurdan li vê derê pêlpêlandine. Ev pêlpêlandina ala kurdî, di navbera Tirkiyê û Almanyayê de bûbû sedamê qrîzek siyasî. Qrîz çareser dibe: "Kela Zitadelle'yê cîheke dîrokî ye û li vê derê herdem çalakiyên çandî li dar dikevin. Me wek şaredariya Spandauyê bi alikariya Dezgeha jinên kurd Hinbûnê xwest Newroza 1992'an bi awayekî fermî pîroz bikin. Ji ber vê yekê em ketin nava hewldanê. Me, di pêvajoya pîrozbahiyê de ala kurdan li ser Kela Zitadelle da çikandin. Piştî pîrozbahiyê dewleta Tirk, ji ber sedemê çikandina ala kurdan nota da dewleta Alman. Ev nota di navbera her du dewletan de bû sedamê qeyranek siyasî. Dewleta Tirk, bi uslûbekî tûnd de-


Siyasetmederê SPD'ê Sigurd Hauff

Almanyayê rexne kir.

Hauff, di salên 1990'î de kurdan nasdike û dibe dostê wan: "Li Rojhilata Navîn 'Şerê Kendavê' destpêkiribû. Wêneyên ku wê demê ji Îraqê derdiketin û li seranserî dinyayê bela dibûn, bala min kişandin. Komkujiya ku rejîma Saddam li hemberê kurdan pêkanîbû, di raya giştî ya cîhanê de deng venedabû. Vê bêdengiyê ez pir xemgîn kiribûm û eleqeya min a pirsgirêka kurd destpêkir. Min pirsgirêka kurd di partiya xwe de anî rojevê û dan naskirin. Kurd, di Rojhilatanavîn de gelekî herî kevnar e û xwediyê çandeke xurt e. Ji bo vê yekê, min xwe nêzîkî kurdan kir û bûm dostê wan."

Hauff hewldanên Tirkiyê, yên ji bo çareserkirina pirsgirêka kurd têr nabîne: "Tirkiye, bo çareserkirina pirsgirêka kurd, di çarçova peymanên endametiya Yekitiya Ewrûpayê de hin gav avêtin; lê belê ev gav kêm in û têrê nakin. Rêya çareserkirina pirsgirêka kurd a li Tirkiyeyê, bi awayek fermî ji lêborînxwestinê derbas dibe. Rejîma Tirkiyeyê, bi salan li gelê kurd tade û işkenceyên gran kir. Divê ev bûyer neyên jibîrkirin. Ji bo vê yekê, hikûmeta Tirkiyê divê ji kurdan lêborînê bixwaze û dûre bo çareseriyek siyasî bikeve nava hewldanan. Lêborîn pêk neye, wê gav ne bi dilsozî bên avêtin."

Li gor axaftina Hauff dewleta Almanyayê bûyerên siyasî û pirsgirêka kurd a li Tirkiyê ji nêzîk ve dişopîne: "Almanya, herçiqas di raya giştî de wek dostê Tirkiyeyê tê naskirin jî, di rastiyê de ne wisa ye. Têkiliyên Almanya û Tirkiyeyê dîrokî ne. Lê Almanya li gor berjewendiyên xwe û li gor zagon û peymanên YE'yê dilîve û di vê çarçoveyê de tevdigere. Tirkiyeyê, di demên dawî de hin zagon guhertin, lê di pratîkê de ev guharandin nehat dîtin."

Hauff gotinê tîne ser girtina DTP'ê û wiha dibêje: "Li Tirkiyeyê girtina partiyan wê ji bo çareserkirina pirsgirêkan qet nebe alîkar, lê pirsgirêkan kûrtir bike. Di dîroka siyasî ya Tirkiyeyê de gelek partî hatine girtin; lê pirsgirêk çareser nebûne."

Hauff qebûl dike ku SPD, di demên dawî de şaşitiyên politîk kirin: "Politîqaya xwe ya sosyal guhertin û wek partiyên rast û kevneperest liviyan. Zagona teqawitbûnê veguhertin. Ev jî bû sedemê wendakirina dengan. Di hilbijartinên giştî yên dawî de têkçûneke dîrokî dît."

Hauff rexne li kurdên ku li Almanyayê dijîn dike û dibêje ku ew zêde bi siyaseta Almanyayê re ne mijûl in: "Li Almanyayê gelek kurd dijîn, lê pewêndiyên wan bi siyaseta Alman re pir kêm e. Heger kurdên ku li Almanyayê dijîn di nav siyaseta Alman de zêdetir cih bigrin wê demê dikarin pirsgrêkên xwe yên li Ewrûpa û li welat baştir bidin nasandin û jê re rêyên çareseriyê vekin."

# 100 milyar deynên nû: Almanya ber bi îflasê ve diçe?

**Köln (Rûdaw)** - Almanya wê di sala 2010'an de ji her salê bêtir pereyan deyn bike. Bi van deynên nû, sozên kêmkirina bacê û çendîn hêsankariyên din ji bo hemwelatiyan ku hevpeymaniya niha beriya hilbijartinan dabû, ji bicihkirinê gelekî dûr dikevin.

Li gor rojnama almanî "BILD", Almanya wê di sala bê de bi giştî 400 milyar Euro deynan bike. Bi vê yekê deynên ku wê di sala bê de bên kirin, bi 50 milyaran ji yên isal bêtir in. Wekî din jî Almanya wê di sala bê de 100 milyar Euro deynên nû jî bike û bi vê yekê Wezîrê Darayî yê Almanyayê Wolfgang Schäuble di dîroka Almanyayê de dibê wezîrê ku herî zêde deynan dike.

Bi van deynên nû Schäuble (CDU) rê li niqaşên di navbera partiya xwe û partiya hevpeyman FDP jî vekir. Siyasetmedarên FDP bangî Schäuble kirin ku zêde deynan neke û wekî sînor 80 milyar Euro ji bo deynên nû pêşniyar kirin.

Tevî van deynên nû, deynên Almanyayê wê bi giştî sînorê 1700 milyar Euro derbas bike. Faîza deynên dewletê hem li Almanyayê û hem li gelek welatên din jî bûye barekî giran û dest û lingên gelek hikûmetan girê daye.

Du welatên YE'yê ku li ber îflasê ne, Ispanya û Yûnanistan in. Ji ber qeyrana aborî ya sala borî û isal, rewşa li van herdu welatan gelekî hestiyar e û ji bo alikariya wan, saziyên Ewrûpî di 10'ê vê mehê de li Brûkselê civiyan.

Eger ev herdu welat nikaribin ji bankeyan prîvat deynan bikin û alikarikirina wan ji aliyê welatên din ên endam pêwîst bibe, Almanya wê weke mezintirîn welatê YE'yê herî zêde mecbûrî alikarikirinê bê kirin.

Brîtanya:

# Navenda DNA: Ji sedî 75'ê reşikan tomarkirî ne



Gelek caran xortên resik bê sedem tên girtin û nasnameyên wan tên tomarkirin.

*Polîsê Brîtanyayê ji sala 1995'an ve mezintirîn navenda DNA ya cîhanê ava kiriye. Heta niha profîla genetîk ya 5,9 milyon kesan hatiye tomarkirin.*

**Köln (Rûdaw)** – Li gor zanyariyên komisyoneke hikûmeta Brîtanyayê, polis bi armanca bidestxistina DNA ya wan, her û her mirovan binçav dike. Weke ku Komisyona Genetika Mirovan di 24'ê Mijdarê de daxuyand, bi vî awayî heta niha profîla genetîk ya ji sedî 75'ê mêrên reşik yên di navbera 18 û 35 salan de hatine bidestxistin û di bankeya brîtanî ya DNA de hatiye tomarkirin.

Di bankeya DNA'yê de ku biryara avakirina wê di sala 1995'an de ji aliyê serokê wê demê John Major hatibû dayîn, heta niha DNA ya 5,9 milyon mirovan hatiye tomarkirin û ev di navbera du salan de zêdebûnek ji sedî 40 e. Ev banke mezintirîn navenda komkirina DNA ya mirovan li cîhanê ye. Berdevkê siyaseta hundir ê partiya kevneperest Conservative Party, James Brokenshire, serokwezîr Gordon Brown bi wê yekê tewanbar kir, ku ew dixwaze welatekî çavdêr ava bike ku tê de her kes wekî tewanbarekî muhtemel bê hesibandin.

Li gor komisyona navborî, DNA ya hinek komên civakî di bankeyê de li gor komên din zêde ye û profîlên genetîk ên ciwanên reşik gelekî zêde hatine tomarkirin.

Wekî din hatiye gotin ku di bankeyê de profîlên genetîk ên yek milyon mirov ku ti caran sûcek nekirine, hatine tomarkirin. Weke ku komisyonê eşkere kir, nivîseke serkomiserekî li ber destê wan e û di wê nivîsê de komîser dibêje ku mirovên ku sûcên biçûk jî dikin, bi armanca bidestxistina DNA ya wan, ew tên binçavkirin.

Eger piştî binçavkirinê ew kes neyên cezakirin jî, profîlên wan ên genetîk di bankeyê de dimînin, ji ber ku polîs di wê baweriyê de ye ku kesên ku carekê bên binçavkirin, zû dereng dikarin sûcekî bikin. Di raporta xwe de komisyon pêşniyaz dike ku profîlên genetîk ên kesên binçavkirî, lê nehatibin cezakirin, piştî şeş salan bên jêbirin. Li gor qanûnên niha, ew agahî bêyî sînora demê tomarkirî dimînin.

Tevlî hewldana komkirina profîla genetîk ya hemû welatiyên Brîtanyayê, rêxistinên parêzvanên agahiyan bikaranîna wan profîlan rexne dikin û dibejin ku dîtina tenê şûnpêyên DNA li cihê bûyerê ji bo ispatkirina kiryarekê têr nakin, ji ber ku ew şûnpêyên DNA dikarin ji aliyê kesê sûcdar bi xwe jî, bi armanca xapandinê, hatibin bicihkirin.

# DYA çermsorên xwe qerebû dike

*Yekem car çermsorên DYA'yê bi pereyekî mezin tên qerbûkirin. Lê Hikûmeta DYA'yê naxwaze ev yek wek qebûlkirina sûc û ne jî lêborînxwestin ji çermsoran, bê nirxandin.*



Serokê DYA'yê Barack Obama ji bo pêwendiyek baştir li gel çermsorên Amerikayê dixebite. Di havîna borî de Obama serokê êla Absaroka, Joseph Medicine Crow, bi giringtirîn medalyayê DYA'yê ji bo kesên sivîl, bi "Medal of Freedom" xelat kir.

**Serwisa Cîhanê (Rûdaw)** – Çermsorên Amerîkaya Bakur dozeke ku bi salan e tê meşandin, qezenc kirin. 300 hezar çermsor ji aliyê Hikûmeta DYA'yê bi 3,4 milyar Dolar tên qerebûkirin.

Dozeke qanûnî di navbera DYA'yê û çermsorên wî welatî ku sedemên wê vedigerin heta sedsala 19'an û bi salan e tê meşandin, bi lihevhatinekê bi dawî bû. Wezîrê Naxwe yê DYA'yê, Ken Salazar, di 9'ê kanûnê de ragihand ku hikûmeta wî wê bi armanca dawîanîna doza ku 13 salan tê meşandin, bi giştî 3,4 milyar Dolar (2,3 milyar Euro) bide hinek hemwelatiyên çermsor û gelên çermsor ên DYA'yê. Salazar got ku ewê 300 hezar çermsorên li North Dakota, South Dakota, Oklahoma û Montana qerebû bikin û herî kêm 1500 Dolar bidin her yekî ji wan. Wekî din hatiye plankirin ku bi nirxê 60 milyon Dolar weqfek ji bo piştevaniya perwerdeya pîşeyî û ya akademîk ya çermsoran bê damezrandin.

Lihevhatina ku divê ji aliyê Kongresa DYA'yê û dadgehê ji bê pejirandin, rastî kêfxweşiya Wezîrê Dadê yê wî welatî Eric Holder jî hat. Holder got ku lihevhatina qerebûkirinê rêya lihevhatineke kûrtir ya civakî jî vedike û lihevhatin weke "bûyereke dîrokî" bi nav kir. Serokê DYA'yê Barack Obama jî piştevaniya lihevhatinekê kiribû û piştî lihevhatinê kêfxweşiya xwe anî ziman: "Ez serbilindim ku hikûmeta min îro gaveki wiha avêt." Obama got ku lihevhatin gaveki giring e di rêya "lihevborandineke bi serbilindî" û bingeha rêvebirinek serkeftî ya karûbarên çermsoran di pêşerojê de ye. Eger Kongresa amerîkî û dadgeh lihevhatinê qebûl bikin, wê ev qerebûkirin ya herî mezin be ku ji bo çermsorên Amerîkaya Bakur hatiye pejirandin.

Beriya 13 salan jina çermsor Elouise Cobell ji ber başnexebitandina fonda cih û warên çermsoran ji aliyê Buroya Karûbarê Çermsoran – ku girêdayî Wezereta Navxwe ya DYA'yê ye – doz li dijî vê buroyê vekiribû. Di vê fondê de Buroya Karûbarê Çermsoran 40 hezar metre çargoşe erda kesên çermsor û 190 hezar metre çargoşe ji erda êlên çermsoran rêve dibe. Qezenca ku ji rêvebirina van erdan tê, ji aliyê Wezareta Navxwe li çermsoran tê belav kirin. Lê gelek çermsoran ti caran qet Dolarek jî ji vê fondê wernegirtibûn û hinekan jî carcaran pereyekî biçûk wergirtibûn. Di doza komî de Buroya Karûbarê Çermsoran bi sextekariyê dihat tewanbarkirin û ji bidestnexistina qezencê ji wan erdan, ji sala 1887'an ve, perpirsyar dihat dîtin. Di demên borî de rêxistinên çermsoran 47 milyar Dolar qerebû xwestibûn û dadwerekî xwestibû li hemberî vê daxwaza çermsoran 456 milyon Dolar bide wan.

Buroya Karûbarê Çermsoran ku di sala 1824'an de hatiye damezrandin, ji bo karûbarê 1,9 milyon amerîkiyên çermsor berpirsyar e. Fonda behsa mijarê piştî derçûna qanûna bi navê "Dawes Act" di sala 1887'an ji bo qerebûkirina çermsoran hatibû damezrandin. Li gor kevneşopiya çermsoran erd ya hemûyan bi hev re e, lê qanûna "Dawes Act" rê da Hikûmeta DYA'yê ku dest deynê ser erdên wan, erdê wan parve bike û bide hinek kes û şirketan. Li DYA'yê bi giştî 564 êl weke çermsor tên qebûlkirin.

Tevî ku DYA'yê bi dayîna vê tezmînatê îndirekt qebûl dike ku wê sûcek li hemberî çermsoran kiriye jî, lê ev nayê wê wateye ku Hikûmeta DYA'yê rasterast sûcê xwe qebûl dike. Rêvebira dozê, jina çermsor Elouise Cobell, got ku ewê baş bûye, eger lêborîn bihata xwestin, lê ja giringtir ewe ku ew gihiştin lihevhatinekê.

Asya:

# Parzemîna mayînan

*Mayîn yek ji çekên herî xeternak in. Ne tenê ji ber ku mirovan dikujin, lê ji ber ku piştî şeran, di demên aştiyê de jî ji bo mirovan û heywanan xeterek mezin in.*



Mayîn xetere didin heywanan jî, wek fîla ku ji lingê wê birîndar bûye...

**Serwisa Cîhanê (Rûdaw)** – Tevî ku hilberîn û belavkirina mayînan li seranserê cîhanê ber bi kêmbûnê ve diçe jî, lê ev çekên xeternak li Asyayê hîn jî dibin sedema mirin û birîndarbûna bi hezaran mirovan. Yek ji sînorên ku herî zêde mayîn lê hatine çandin, sînorê di navbera Koreya Bakur û Başûr e.

Konstrasta di navbera seraxa aram ya bihuştî û binaxa xeternak nikare mezintir be. Çiyayên tropîk, tevlî çûk û heywanên xwe yên rengareng, herêmekê dixemilînin ku belkî herêma herî zêde mayînkirî ya cîhanê be. Di şerîta sînor a çar kîlometre fireh û 250 kîlometre dirêj a di navbera Koreya Bakur û Başûr de bi milyonan mayîn hatine çandin. Û ji ber vê yekê kêmasiyek dîn ji ya vê bihuştê tê dîtin: Gelek heywanên li derdora paralêla 38'an bi lingekî ne. Wan pêyî ser mayînan kirin.

Tiştê ku li vê şerîta li ser sînorê welatekî parçekirî – ku ji mirovan re qedexe ye – tê serê heywanan, li gelek herêmên din ên cîhanê tê serê mirovan jî. Li gor agahiyên rêxistina almanî ya li dijî mayînan "Aktionsbündnis Landmine" li seranserê cîhanê derdora 500 hezar mexdûrên mayînan tên tedawîkirin û li 80 welatan jiyana mirovan ji ber mayînan di metirsiyê de ye. Ji sedî 90'ê qurbaniyên mayînan ji kesên sivîl in û ji wan jî ji sedî 30'ê wan zarok in. Herçiqas di sala 1997'an de 156 welatan li Ottawa ya Kanadayê peymanek li dijî bikaranîn, hilberîn û depokirina mayînên ku li dijî mirovan tên bikaranîn, mohr kirin jî, lê welatên giring yên weke DYA, Çîn û Rûsyayê hîn jî tevlî peymanê nebûne.

Li gor berdevkê rêxistina "Aktionsbündnis Landmine", Thomas Küchenmeister, di deh salên borî de bêtirî nîvê mexdûrên mayînan ji herêma Asya-Pasîfîkê bûn. Welatên Asyayê hem di hilberîn û hem jî di çandina mayînan de di rêzên herî pêş de ne. Li gor Küchenmeister, tena welatê ku hîn jî mayînên anti-mirov diçîne, Myanmar e. Tevî Hindistan û Pakistanê, Myanmar tena welate ku van mayînên xeternak hildiberîne. Lê ne tenê ev her sê welat: Di nav welatên ku heta niha mayîn nalet nekirine, herî zêde welatên Asyayî hene: Çîn, Hindistan, Koreya Bakur, Koreya Başûr, Laos, Myanmar, Nepal, Pakistan, Singapûr, Srî Lanka û Viyetnam.

Ya ku mayînan hîn xetertir dike ew e ku ew ne tenê di dema şer de metirsiyek mezin in, lê ew piştî şeran, di demên aştiyê de jî dimînin. Mayînên ku carekê hatin çandin, dîtin û rakirina wan gelekî zor e, ji ber ku ew gelek caran ji cihê ku lê tên çandin, dûr dikevin. Her cara ku li paralêla 38'an baran dibare, mayînên çandî ji derdikevin ser axê û bi ava herik re cihê xwe diguherînin û êdî nikarin bên dîtin. Hinekên wan di kanalên avê yên Koreya Başûr de tên dîtin.

Ku mayînên çandî piştî dehsalan jî xeter in û mirovan dikujin, mînakên Viyetnam, Kamboçya û Laos nîşan didin. Li van welatan hîn jî mayînên ku di dema şerê Viyetnam de hatibûn çandin, diteqin. Tenê li Laosê bi milyonan ton mayîn hatibûn belavkirin.

# Li Îraqê hîn jî koletî didome

**Besra (Rûdaw)** – Paşmayên Afrîkiyên ku beriya bi sedan salan ji aliyê bazirganên koleyan ên ereb bi zorê ji bo Îraqê hatin anîn, hîn jî ji koletiya xwe rizgar nebûne. Yek milyon û 200 hezar çermreşên Afrîkî yên li başûrê Îraqê daxwaz dikin ku weke kêmnetew bên naskirin.

Di kolanên genî û bi toz ên qezaya Zubêr a li başûr rojavayê bajarê Besrayê, mirov rastî taxeke wek taxa Harlem a Amerîkayê tê. Li vê taxê Îraqiyên Afrîkî dijîn. Îraqiyên Afrîkî behsa sivikdîtina xwe ji aliyê erebên herêmê dikin û vê yekê weke beşek ji kultûra Îraqiyan destnîşan dikin. Reşik hîn jî weke kole tên bi nav kirin û nikarin bi rêya hevsergiriyê tevî gelên din bibin û di pîşeyên herî kêm û xirab de kar dikin.

Cîgirê Serokê Encûmenê Şarevaniya Besrayê Ehmed Selatî red dike ku li Îraqê cudakirin û regezperestî li ser bingeha rengê çerm heye û wiha dibeje: "Dijwariya jiyana Îraqiyên Afrîkî wek a pirraniya hemwelatiyên Îraqê ye, lê ti peywendiya vêya bi meseleya reş û sipiyan ve tune."

Dîroknas dibêjin ku Îraqiyên bi eslê xwe Afrîkî di çarçoveya bazirganiya ereban ya koleyan ku ev bazar beriya 1400 salan germ bû, ji rojhilatê Afrîkayê bo Îraqê hatine anîn. Niha pirraniya wan li parêzgehên başûrê Îraqê û herî zêde jî li Besrayê dijîn û di fabrîkayên berhemanîna xwê û şekir de kar dikin. Herçiqasî di sala 1920'an de koletî li Îraqê bi fermî hat qedexekirin jî, lê li gor Îraqiyên Afrîkî bazirganiya koleyan heta salên 1950'an jî germ bûye.

"Koleyên" Îraqê ku hejmara wan li gor texmînan digîje yek milyon û 200 hezar kesan, vê dawiyê dest bi kampanyekê kirine, da ku wek kêmneteweyekê bên naskirin. Eger kampanya wan bi ser keve, ewê wek Xiristiyaniyan û kêmnetewên din ên Îraqê hinek mafan bi dest bixin.


Munzur Çem

# Hunerê Munzur Çemî û romantîzm -I

*Ez şêna vajêra ke tesîrê romantîzmî fikrê Ewropa ser o zaf o. Hem zî şekl dayo ma neteweyanê bînan. Kefşkerdişê fikrê romantîzmî no het ra muhîmîya xo zêde ya.*

**HUDAÎ MORSUMBUL**

Edebiyatê kurdki heme lehçeyan de her roje bineyna aver şino. La ez wazena nê nuşteyê xo de hetê neteweyî ra edebiyatê lehçeya kirmancki ser o çend çiyan vajera. Wexto ke merdim hunerê neteweyî ser o vindet, gani niyado ra romantizmi, tarix û felsefeyê romantizmi, gani hira-hira ser o vindo.

Mi waşt ke nê nuşteyê xo de, edebiyatê kirmancki ra, ez romannê Munzur Çemî û hunerê ey ê nuştişî ser o vindime. Labelê aye ra ver, eke ez derheqê metodolojiya xo de tayê izehetan bidi, do rind bo. Çunkî ez wazena hetê romantikiye ra edebiyatê Munzur Çemî bineyke kiritik bikime. Romantizm nuşteyê mi de cayêde hîra gêno.

Weşanxaneyê YKY nê derheqî de kitabode newe weşanayo. Nuştoxê nê kitabî Isaiah Berlin, nameyê kitabî zi Romantikliğin Kökleri (Kokê Romantikiye) yo. Ez wazena ke no kitab mi rê rayê bimusno.

Ez şêna vajêra ke tesîrê romantizmi fikrê Ewropa ser o zaf o. Hem zî şekl dayo ma neteweyanê binan. Kefşkerdişê fikrê romantizmi no het ra muhimiya xo zêde ya. Isaiah Berlin vano, metodê romantizmi ebe sebr metodê tarixi şuxulneno. (Berlin, 2007:39) Romantiki, derheqê heyecanan û neteweyiye de nusenê. Ma nê babetan edebiyatê romantiki de zaf vinenime.

Ma vinenime ke Munzur Çem zi babetanê xo tarix ra gêno. Romanê ey tarixê Kurdistanî ser o yê. Terteleyê Dêrsimi, Gülümse Ey Dêrsim de yeno ra ziwan. Koçkerdişê ma û şerê kurdan û tirkan Gula Çemê Pêrre de yeno ra ziwan.

Kirmanckî de bi nameyê Hotay Serra Usifê Qurzkizi yew romanê serebutan (taslak roman) yê Munzur Çemi esto, 1992 de Weşanxaneyê Roja Nû ra weşaniyayo. Yew roman zi bi nameyê Gula Çemê Pêrre 2007 de Weşanxaneyê Vateyi ra weşaniyayo. Ziwanê tirkî de romanê xo bineyna zêde yê. Nameyê romananê ey wina rêz benê: 1. Gülümse Ey Dêrsim (3 cildî), 2. Ekmeği de Yaktılar û 3. İsyana Çağrı.

Gani ma karakteran, mekan û demi ser o ciya-ciya bivindime. Miyanê her çar romanan de çi ferqi estê, înan biyarime meydan. Nuştişê Munzur Çemi koti ra hêzê xo gêno, gani ma etud bikerime.

Kitabo verên ê kirmancki Hotay Serra Usifê Qurzkizi yo. Hetanî nika hirê kitabê ey formê romani de bi tirki nusiyay.

Hotay Serra Usifê Qurzkizi de, qismê Vateyo Verên de Munzur Çem wina vano: "Ez hêvi (omid) kena ke fêydê nê kitabi reseno isonê ma û iyê ke êy wanenê, parçikêde Kurdistani de heyat çutir biyo, şari çi diyo, heqa dey de benê wayirê fikri." (r.10) Nê vateyê ey amey hurend. Munzur Çem ebe romanê xo Gula Çemê Pêrre na idiaya xo dewam kerda arda tiya.

Qismê yewine ebe teswir kerdena mekanî dest pêkeno. Ma vinenime ke ma Gêxi de yime. Derûdor ebe nameyê ê çeman yeno ra ziwan. Labelê teswir hêzê xo paweno. Qaytê nê nimûneyî bikime:

"Çemê Pêrre binê Gêxi de, miyanê tir û kaşan de sere keno teber, ver keno ra başûrê-rojawanî, koyan qilaşneno ra, nat û wetî ser çiv dano; ge beno vindi, ge vejino; heto çep de Awa Temrane, heto rast de Çemê Hergepi keno xo virare, pil ra bi qijê dereyan sipeno we, her çi ke şi beno gird, beno girozin; pilesino ko û şuyan ro, devacêri ser kuwno dûri. Cêviyo xorin de ge beno hîra ge beno teng; ge sey rispiyê beno giran û hêdi-hêdi rayir geno, ge beno şip, beno xortêde des û heşt serre, nino zaftkerdene. Ge beno mangayê şit dano, ge boxeyêde wisari yo hereşe keno. Ge xeyrxwazê yo, xirabiye çik a nêzaneno, derûdorê xo ra hes keno, ge pêlanê haran dano piro, beno berzbeno nizm, xo kuyno nover û bover ra, dar û ber û kemer û kuçi fino ra xo ver aver erzino, Depe, Qizilkilise û Mazgêrdi xo pey de verdano, sifte o bi Çemê Mizûri ra keleyê xo yewbin ro birrnenê, kuwnê têvirare, şonê Pêrtage de resenê bi Çemê Muradi." (r. 7)

Roşan Lezgin seba hikayeyê Munzur Çemi vano ke, "Munzur Çem hewnê ma perune ardo ziwan." Nameyê hikayeya Munzur Çemi "Hewnê Newroze" bi. Munzur Çem ebe nê romanê xo yê neweyi nê hewni yan zi nê kabusi ano ra ziwan.

Kabusê kurdan ra ez çi qest kena, tayê nê zi biyarime orte. Qehremana romanê Munzur Çemi azeba bi nameyê Gulcan a. Gulcane nê serran de ciwanêde azebe ya kurd a. Heyatê inan Kudistan de xirabe beno. Eskerê tirkan nê mileti nefi keno, hem zi sey ê serranê verênan cayê zi nêmusneno bi inan. No keye koç keno yeno İstanbul. Edebiyatê kirmancki de şaristani tay ca gênê. No roman, zafane İstanbul de derd û kulê kurdan ano ra ziwan. Hem teswiran de hem psikoloji de şiyo cayêde xorin. No het ra zi romanêde muhim o.

Roman de kabus seni yeno pê, ez naye zi fekê yew qehremani ra vaci: "Sistemê tirkan sistemêde nijadperest o; cinawirê yo. Cinawir ki bê qurban nêşkino biciwiyo. Ti, nê qurbanan ra yew a." (r. 493)

Teswirê xo zaf huşk ê. Romanê Munzur Çemi de mecaz, alegorî û teşbihi çiyode dûri yê. Hikaya xo de ca bi ca nê hetan ra ma çiyê vinenime labelê nê romani de cayê de girs nêgêno. Mihail Şoholov û Cengiz Aytmatov behsê dar û beri û kemeri kenê. Nuştoxi wendoxan miyanê behskerdişe xo de kenê vindi. Teber ra yew dinya esta. Yew dinyaya bine newe ra yena ronayene. Seke tija newiye biviraziyo, heni. Gerek nuştox xo binimno. Ma wendoxi, miyanê reng û boye de bimanime. Gani nuştox Homayê nuşteyê xo bo. Homayêde henên ke xo bikişo. La azadbiyayiş û iradeyê xo zi tede estbo. Gani xo nuşteyê xo de bihelno.

Tiyatroyê yunaniyan de her kes her çi zanitêne. Rind yan xirab, her çi têlewe de bi. Ciwamêrdiye ser o qisey kerdêne. Derse dayne mileti. Heliyayiş çin bi. Xiyalode newe nêşkino wendox yan zi temaşekerdoxan bikero teber. Roman seba propagandayi yeno nuştene. No heqiqet seba romanê tirkan zi henên o.

(Nuşte dom keno...)

# Mast û sihet

Mast, seba siheti û zinde mendişi werdêko bêemsal o. Vera nêweşiyan de merdimi hêzdar keno, sistemê muqawemetê wucûdi pêt keno. Zafê mikrob û mantarê ke sistemê werdişi (sistemê made û roqilayan) de viraziyênê, mast inan mirêneno. Mast, zaf asan weriyeno û çi gidaya ke miyanê masti de ya asan kewna miyanê wucûdi. Mast hetê karbonhidrat, protein, rûn, vitamin, kalsiyum ve fosfori ra zaf zengin o. Pitikê şeşaşmeyi zi şêni bi asani mast biwerê. Domanê ke mast wenê asan didanan vejenê, esteyê inan bisihet benê gird û mast inan raşitizm ra zi paweno. Kokiman de zi verniye ro vilişiyayişê esteyan gêno û kokimi xosero, zinde manenê. Mast keno ke roqilayan de mikrobê nêweşiye bimrê û mikrobê faydayêni vêşi bibê; mast hem ishali vindarneno hem zi roqilayan keno nerm û verni ro qebzbiyayişi gêno. Mast boya feki qedêneno û nêverdano didani tartar bigirê. Eke şan de merdim çend kewçiki mast biwero, hina asan hewnê merdimi yeno û wucûd hina baş isterehet keno. Mast nêweşiya diyabeti rê zi zaf hol o. Kolesterolê xirabi ano war û kolesterolê başi keno berz. Birînanê madeyi û nêweşiya ulseri tedawi keno. Nêweşiya qelbi, şeker, vilişyayişê esteyan, dizanteri û diyareya kronike rê zaf faydeyê xo esto. Û mast keno ke rûn wucûd de asan bişuxuliyo û verni ro qelewbiyene bigêriyo. Merdimê ke tim mast wenê emrê inan meridamanê ke nêwenê ra hina dergêr o.

Seba vinayiya çiman vitaminê A,
Seba gewzbiyayişi vitaminê E,
Seba sinir û qelbi vitaminê B1,
Seba gongewziya posteyi vitaminê B2,
Û seba xurtbiyena esteyan vitaminê D tede esto.
Proteino ke mast de esto merdimi hêzdar keno,
Mast sistemê werdişi sererast keno, birînan û veşayeyan tedawi keno,
İshali vindarneno, nêweşiya loqirayan û madeyi keno weş,
Verni ro tesiro xirab ê antibiyotikan gêno,
Jehrê roqilayan kişeno û nêverdano tede jehr viraziyo,
Mast keno ke roqilayi baş bixebitiyê,
Zafê nêweşiyan tedawi keno,
Mineral û kalsiyum tede zaf i,
Vera nêweşiyan de muqawemetê wucûdi pêt keno,
Enzimê ke zirar danê wucûdi kêmi keno,
Enzimê ke fayde danê wucûdi zêdneno,
Muwazeneyê asit-bazi miyanê goni de rast keno,
Verni ro tesiro nebaş ê antibiyotikan gêno,
Seba nêweşiya şekeri zaf bifayde yo,
Kolesterolê xirabi (LDL) ano war, yê başi vêşi keno.

Xulasa, faydeyê masti zaf o. Mast de sihet esto. Mast biwerêne, sihet bivinêne.



Rûdaw Şertên Abonetiyê

**Ji bo salekî:** *Almanya, Belçîka, Awûstûrya, Fransa, Holanda:* 60 Euro · *Swîsre:* 120 CHF · *Brîtanya:* 60 GBP *Swêd* (Schweden): 900 SEK · *Danîmarka* (Danemark): 600 DKK · *DYA* (USA): 100 USD *Kanada* : 120 CD · *Tirkiye*: 100 TL
**Ji bo şeş mehan:** *Almanya, Belçîka, Awûstûrya, Fransa, Holanda:* 30 Euro · *Swîsre:* 60 CHF · *Brîtanya:* 30 GBP · *Swêd:* 450 SEK · *Danîmarka:* 300 DKK *DYA* (USA): 50 USD · *Kanada:* 60 CD · *Tirkiye:* 50 YTL

**Ji bo Almanya:** Rudaw Media GmbH
Bank: Deutsche Bank Köln · Konto Nr: 2450161
BLZ: 37070024
**Ji derveyî Almanya:**
IBAN: DE48370700240245016100
BIC: DEUTDEDBKOE
**Navnîşan:**
Rudaw Media GmbH · Gutenbergstr. 63a
50823 Köln / Almanya
**E-mail:** info@rudaw.de



Selîm Sadak serê govendê dikşîne: "Ev sala bê wê hejmar bibe duqat, ji ber ku gelek kêfa civakê ji vê mîhrîcanê re hat." (Wêne: Diha)

## Şaredarê Sêrtê Selîm Sadak:

# Kurd ji 'kart kurtê' hatin heta TRT-6'ê!

**EVDİLA KOÇER**

Selîm Sadak parlamenterê DEP'ê yê Şirnexê bû. Piştî girtina DEP'ê deh salan di girtîgehê de ma. Piştî serbestberdanê di nav gel de wekî sefîrê aştiyê hate naskirin. Di hilbijartinên dawî yên herêmî de li Sêrtê wekî şaredar hat hilbijartin. Heşt meh di ser hilbijartinê re derbas bûn, Rûdawê jî di derbarê belediye û siyasetê de çend pirs ji Selîm Sadak kirin. Hefta borî Dadgeha Destûra Bingehîn ya Tirkiyeyê li Selim Sadak jî cezayê 5 sal qedexeya siyasetê danîn. Ev hevpeyvîn hefteyeke berî biryara dadgehê hat kirin.

***Kekê Selîm, te hem parlamenterî kiriye û hem jî niha şaredarîtiyê dikî, gelo ferqa parlamenterî û şaredariyê ji bo te çi ye?***

Parlamenerî helbet karekî taybet e, îro karekî neteweyî ye, xitabî hemû kesan dike. Parlamenterî ji şaredarîtiyê gelekî rihetir e. Di dewra herî zor de min parlamenterî kir, lê niha bi qasî ku ez di şaredarîtiyê de diwestim, bi qasî ku ez berpirsyariya wê hildigirim, ew çend min di parlamentariyê de his nedikir. Li aliyê din jî di şaredariyê de mirov her dem di nav gel de ye, mirov di nav pirsgirêkên gel de ye, mirov ji wan pirsgirêkan sedîsed fêm dike, di wî alî de bêtir avantaj heye ku mirov bêtir gel nas dike. Heçî parlamenteriye, mirov li ser navê gel jî dipeyîve lê sedîsed mirov nikare daxwaziya gel bîne ser ziman, ji wan pirsgirêkan baş fêm nake. Ev parlamenterên me yên herêmê heke ku ji mehê hefteyekê di nav gel de nemînin, wê nikaribin xweşik ji doza gel fêm bikin.

***Piştî ku tu bûyî serokê şaredariyê, gelo te hêviyek çawa ji şaredarîtiyê dikir, van hêviyên xwe tu niha çawa dibînî?***

Berî ku ez bême hilbijartin, helbet ez ne bi rizaya xwe hatim vira, partiyê ev peyvîr xista stûyê min. Piştî ku ez hatim hilbijartin jî min dizanibû ku şaredarî zor e, ji ber ku şaredariya berê ya AKP'ê ti sebebî li Sêrtê nekiribû. Deynê wê pir bûn, ti hatineke wê tunebû, ji hev xistibûn. Min dizanibû ku karê me zor e…

***Belê, piştî ku tu hatî hilbijartin heta niha çi tişt heye ku tu bi serbilindî bêje ev yek min pêk aniye û ez bi serketime?***

Beriya hilbijartinê jî min ji gel re vê yekê digot ku divê heta du salan ti tiştî ji min nexwazin û hêvî nekin.

***Ji ber çi?***

Ji ber ku bajar zêde xirabe bû, kolaneke wê ya saxlem tunebû, belediya AKP'ê bajar ji hev xistibû, tarûmar kiribû. Têkiliya belediyê û gel û ya burokratan ji hev qûtkirî bû.

### Deynê Belediya Sêrtê: 151 trîlyon TL

***Belediya AKP'ê ya berê çiqas ji we re deyn hiştibû?***

151 trîlyon pere. Lê belê heta niha tişta ku ji me nehatiye hêvîkirin jî me pêk aniye. Di warê çêkirina kolanan de, di warê paqijiya bajêr de, ferqa îsal û par gelek e. Di hêla şano, konser û têkiliyên bi gel re me gelek tişt kirin, ev daxwaziya gel bû, me jî pêk anî…

***Niha çi pirsgirêkên acîl ên Sêrtê li ber destê te hene ku tu divê bêne pêkanîn?***

Niha pirsgirêka herî acîl paqijiya bajêr e. Û wekî din jî em dixwazin ku Sêrtê ji toz û heriyê xilas bikin û divê her roj ava vexwarinê biherike. Li hêla din jî pêdivî bi parkan, bi projeyên mezin, bi tiştên nû heye… Ya rastî her tişt jî pirsgirêk e…

***Em dizanin ku li Sêrtê kurd û ereb di nav hev de dijîn. Gelo piştî ku tu hatî ser text, gelê ereb çawa li xebatên te dinêrin, gelo pêşfikrînên wan di derbarê kurdan şkestine an na?***

Ez dibêjim şkestî ye, berî niha jî çend ereb mêvanên me bûn. Dibêjin ku ew pêşfikrîna li dijî DTP'ê hêdî hêdî dişkê, ji ber ku ji belediya AKP'ê gelekî dilsar bûbûn.

***Ji bo ziman û çanda ereban te heta niha tişteke konkret kiriye?***

Ev cara yekem bû ku di cejnê de cejn bi sê zimanan hate pîrozkirin, kurdî, erebî û tirkî. Ez ji ereban re dibêjim, eger hûn bixwazin ziman û çanda xwe pêş ve bibin, ez dikarim cih ji we re vekim. Lê belê ez dibînim ku daxwaziyeke wan ya wisa tune ye.

***Gelo ji bo çi daxwazeke wan ya wisa tune?***

Yanî vê yekê ji xwe re nexistine kar, ev yek ji wan re nebûye têkoşîn. Ji berê de ti armanceka wan ya wisa tune bûye…

***Di vê meselê de daxwaziya kurdan ya di hêla ziman û çandê de çi ye?***

Daxwaziya kurdan pirr e. Kurdan ji ber zimanê xwe her tişt kiriye. Hin projeyên me di derbarê navê kurdî ên tax û kolanan heye. Lê divê em ji bîr nekin ku ev cara yekem e ku em belediya Sêrtê werdigirin, loma berê li vir di derbarê çand û hunera kurdî de tiştek nehatibû kirin.

***Berî niha jî we mîhrîcana fisteqan çêkir, gelo ev festîvalên çandî çi bandor li civakê dike?***

Bondareke mezin dike. Ev cara ewil bû ku bi zimanê kurdî, erebî û tirkî mîhrîcaneke wisa hate çêkirin. Milet jî ji vê piçekî ditirsiye, ji ber ku dewlet bi xwe jî li hemberî vê yek bû.

Ev sala bê wê hejmar bibe duqat, ji ber ku gelek kêfa civakê ji vê mîhrîcanê re hat. Li hêla din jî em dixwazin avahiyeke çand û hunerê vekin, me jê re cih jî veqetandiye, di wir de mirov dikare li ser ziman û çanda kurdî, erebî xebatê bike.

### Em dixwazin ku kolanên Sêrtê ji toz û heriyê xilas bibe

***Di civînên gel de daxwaziyên herî mezin çi ne ji we?***

Daxwaziya wan ya herî mezin ew e ku em di nav gel de bin, bi gel re bimeşin, eleqedariyê bi gel bikin, keda gel bidine ber çavê xwe. Û di vê dema pêş de dixwazin ku kolanên Sêrtê ji toz û heriyê xilas bibe û her dem ava wan ya vexwarinê hebe.

***Tu wek şaredarekî, dema ku derdikevî kolanan, gelo heta niha kes hatiye pêşiya te û rexneyekî li te kiriye?***

Na, na. Îro wekî berî hilbijartinê milet germ e, tê pêşiya me û piştgiriyê dide. Dibêjin ku em dizanin şaredarî zêde îmkanên wê tune, perê wê tune. Dibêjin heke tiştek hebe, em ji we re hazir in.

***Min dixwest çend pirsên aktûel jî ji we bipirsim. Dema ev lînckirin û lêdanên dawî li metropolên Tirkiyê li ser kurdan diqewime, gelo hingê li Sêrtê çawa deng vedide?***

Ev ne cara yekemîn e ku lînckirinên wisa diqewimin. Ev panzdeh, bîst sal e ez di nav siyasetê de me, her dem dixwazin van leyîstokan bikin û civakê bera hev bidin. Gelê Sêrtê bi vê yekê aciz e helbet. Lê dibêjin ku ev provokasyon in, dixwazin pêşî li aştiyê bigirin û divê ti kes neyê van leyîstokan. Dema li metropolên Tirkiyeyê ev lînckirin dibin, li vir yekîtiya milet zêdetir dibe…

***Gelo heta niha li bajarên kurdan tişteke wisa hatiye serê tirkekî?***

Na, nexêr. Heta niha kurdan di nav xwe de wekî wan şovenîzmeke wisa nekirine. Ji ber ku siyaseta kurdan hem ji bo wan e, hem jî ji bo tevahî gelan e. Ewên ku vê lînckirinê dikin, ji bo tunekirina kurdan her dem siyasetê dikin. Em wan kesan xweş nas dikin. Kurd ne xerîbî van tiştan in, van faşîstan xweş nas dikin.

### Çiqas ku tevgereke aştiyê dikeve dewrê, ew jî hereketeke şoven dixin dewrê

***Ev nexweşiya lînckirinê ji ku tê li gorî we?***

Ev ne karê du, sê rojan e. Ev hişê şovenîst ev sed sal e dixwazin ku kurdan tune bikin. Ji dema destpêka avakirina qanûnên komarê heta niha her kurdan înkar dikin. Loma çîroka wan dûvedirêj e. Çiqas ku tevgereke aştiyê dikeve dewrê, ew jî hereketeke şoven dixin dewrê. Bi vî awayî naxwazin ku kurd bi ser kevin.

***Eger ku sibe şerê navxweyî derkeve û kurd û tirk bi hev bikevin, gelo wê çawa bibe?***

Divê em van lîstokên faşîstan vala derxînin. Çareserî xurtkirina yekîtiya kurdan e. Divê her kes bikaribe dengê xwe bigihîne demokratên tirkan. Divê em derdê xwe ji wan kesên fêmdar re par ve bikin û bi wan re li dijî van faşîstan tevbigerin. Bi vî awayî wê ew jî pûç bibin…

***Çareseriyeke herî maqul ji bo pirsa kurd li gor we çi ye?***

Yek carî divê gelê kurd tevgera xwe bidine qebûlkirin. Wekî din çareserî tune. Li her derî kurd têne qebûlkirin lê ne wekî rêxistinî. Loma divê kurd bi rêxistinên xwe ve bêne qebûlkirin.

***Çi aqilê we bi vê 'açilim'a hikûmetê dikeve?***

Ev 'açilim' jî kurdan yekoyek qebûl dike, lê wekî kom, wekî rêxistin qebûl nake. Ku mirov ne rêxistinkirî be, ne xwedî sazî be, wekî kurd têne qebûl kirin, lê bi rengê din na.

***Gelo tişteke baş di vê 'açilim'ê de tune ku hûn ji xwe re bêjîn, weleh ev jî baş e?***

Heyran ev 'açilim' bi xwe jî tevgera kurd bi wan daye qebûlkirin. Ti kes bi xêra xwe tiştekî nade kurdan. Ti kes bi xêra diya xwe tiştekî nade kurdan. Hin tiştên heyî jî têkoşîna kurdan peyda kiriye. Ji bo vê yekê bedeleke mezin hatiye dayîn. Dibêjin me TRT-6'ê vekiriye. Ma TRT-6 bi xêra diya xwe vekirine û dane kurdan. Kurd ked û bedelên mezin dan, ji kart kurt hatin heta TRT-6'ê. Qebûlkirina gelê kurd ne rehet bû.

### Ewrûpa jî, Amerîka jî, AKP jî, hemû li devê hev dinêrin

***Dema hûn bi sefîr û delegasyonên Ewrûpî re hevdîtinan dikîn, gelo fikreke çawa di serê wan de heye di derbarê pirsa kurd de?***

Ewrûpa hêj tam guhê xwe nedaye çareseriya pirsa kurd. Ewrûpa jî, Amerîka jî, AKP jî, hemû li devê hev dinêrin. Li hev mêze dikin. Kurdan wekî kes qebûl dikin, lê wekî rêxistin qebûl nakin.

***Gotina we ya dawî çi ye?***

Gotina min ya dawî ev e, kurd li her deverê jî divê xwe xurt bikin û rêxistina xwe bidine qebûlkirin. Ku kurd wekî rêxistin neyêne qebûlkirin, her tişt pûç e, her tişt bê qîmet e. Loma divê kurd li her derî li xwe xwedî derkevin. Û divê dev ji daxwaza xwe ya aştiyê bernedin.




*Her kes bi awayê xwe guherîna jîngehê protesto dike.*

# Kongreya hawîrdorê jîngeha Danîmarkayê wêran kir!

**Kopenhagen (Rûdaw)** - Bedewî, ciwanî û xweşiya jiyanê ku di rastiyê de jiyana berpirsan ji jiyana xelkê ji rêzê cuda dike, di Kongreya Kopenhagenê de bû sedemê vêya ku hinek kes bêjin: "Dibe ku pêwistiya me bi sazkirina kongreyekî din hebe bo kêmkirina zerarên ku Kongreya Kopenhagenê gihandin jîngehê."

"Gelo ev kongre ne ji bo rizgarkirina cihanê bû?" Ev pirsa Maykeen Fres Gorgins ê rêveberê mezintirîn şîrketa kirêdana otomobîlên lîmûzîn li paytextê Danîmarkayê ye û vê pirsê wek rexneyekê dike. Gorgins dibêje ku di rojên asayî de nêzîka 12 otomobîlan bi kirê dide lê di rojên birêveçûna kongreyê de ku wê di 18'ê vê mehê bi dawî bibe, 200 daxwazkar hatine cem wî. Şîrketa wî û şîrketeke din jî bo cîbicîkirina daxwaziyan, neçar man ji Almanya, Swîsre û welatên din ên cîranên wan otomobîlan bi kirê wergirin. Tevahiya otomobîlên lîmûzîn ku bo 11 rojên kongreyê ji şîrketan bi kirê hatine girtin 1200 otomobîl in. Gelo hejmara otomobîlên elektrîkî ku ketine jêr xizmeta kongreyê de çiqas e? Wek Rojnameya Daily Telegraph a Brîtanî dibêje: "Tenê 5 otomobîl in."

Ji bilî otomobîlên lîmûzîn ku mesrefa wan zêde ye, balafirxaneya Kopenhagenê ji di rojên lidarxistina kongrê de, ji bilî bi sedan firokeyên giştî, pêşwaziya 140 firokeyên taybet jî kiriye û pirraniya van firokeyan berî ku cihê veniştina wan bê destnîşankirin, neçar bûn ku gelek caran li ser asmanê Kopenhagenê de bizivrin.

Bo beşdarbûna di kongreyê de 15 hezar berpirs û nûnerên dewletan, 5 hezar rojnamevan û 98 serok û serokwezîrên welatan berê xwe dan Kopenhagenê, ev jî bilî hunermendên Holywood ên wek Leonardo DiCaprio û serkirdên wek keşe Desmond Tutu. Ev hemû lêkolînê li ser guherînên keş û hewayê dikin ku bi sedemê dirustbûna gaza karobondioxîdê peyde bûne ku egerê wêya heye, ku çarenûsa zeminê û jiyana milyarên mirovan bixe xeterê.

Lê belê sazkerên kongreyê dibêjin ev zirveya keş û hewayê nêzîka 41 hezar tonên gaza karbondioxîdê tevî bayê dike, yanî wek gaza ku bajarekî wek Middlebrow berhem tîne. Lewma rojnamevanekî danîmarkî nivîsîbû: "Tenê însyatîfa xanimên laşfiroş ên Danîmarkayê ku soz dane ku xizmetguzariyê belaş pêşkêşî beşdarên kongre bikin, ti gazên xirab berhem nayîne! Rastî jî kongrekî giring e bo rizgarkirina zeminê!"

# Pink taxi di xizmeta jinan de ye!



*Taksiyên jinan niha li kolanên Barcelonayê jî tên dîtin.*

**Barcelona (Rûdaw)** – Mêr nikarin li taksiyên pembe (pink) siwarbin. Ew taksî taybetî ji bo jinan e. Hem siwar, hem jî şofêrên wan jin in. Afirênerên fikra taksiya pembe dibêjin wan ji bo ewlekariya jinan dest bi vî karî kirine. Ezmûna taksiyên pembe li Meksîkayê dest pê kiriye. Niha hejmara wan ne pir zêde be jî, ev taksî bi kêfxweşî ji aliyê jinan ve tê pêşwazîkirin. Taksî bi sistema GPS sîgnalan digire û diçe ber deriyê muşteriyên jin.

Aida Santos ku li Meksîka şofêreke Taksiya Pink e wiha dibêje: "Ji ber ku gelek caran şofêrên mêr, siwarên jin bêzar dikin, taksiyên pembe wek çareyekê hate peydakirin…"

Li Meksîka şofêrên mêr li dijî vê sistemê ne. Ew dibêjin derketina taksiyên pink îmaja wan xerab dike. Taksiyên pembe piştî Meksîkayê niha li gelek bajarên wek London, New York, Moskova belav bûne. Di rojên dawîn de li Spanya bajarê Barselona jî ev şêwe taksî derketin kolanan. Eger jinek bixwaze bi "takisya pink" biçe, bi riya telefonê li "xeta pink" digere. Xeta pink tê wateya ku muşterî "taksiya pink" dixwaze. Lê li Barselona pirsgirêka rengê taksiyê derketiye. Li wê derê rengê taksiyan divê reş û zer be. Ji ber vê yekê xwediyên şîrketa "taksî pink" li ser kar dikin ku yasayeke taybetî ji bo "taksiyên pink" bê derxstin.






*Henar û bavê xwe Hesen Mewlûdî (Wêne: Rûdaw)*

# Almanya li Henarê heyran ma

**MİSTEFA ÇİWARTAYÎ**

**Mannheim (Rûdaw)** – Keça kurd a 9 salî Henar Mewlûd di kanala RTL de strana Leona Lewis stirî û ne tenê jûrî, bi milyonan temaşevanan jî ecêbmayî kir. Ev du sal in ev keç tevlî bernameya "SuperStar" û "Super Talent" a RTL'ê dibe. Di tevlîbûna sala borî de herçendî Henar biserneket jî, lê îsal strana Lewis stirî û di serî de jûrî, temaşevan û mêvanên di salona şahiya stûdyo de rûniştî, kes nema ku dengê xwe nedayê.

Henar li bajarê Mannheimê ligel dayika xwe dijî, du xwişk û birayekî wê heye. Ew gelek alîkariya wê dikin û herwiha ji dayik û bavê xwer pir razî ye. Henar di dibistana seretayî de di sinifa sêyem de dixwîne û bi giştî di dersên xwe de baş e. Henar li dibistanek taybet dersên mûzîkê jî distîne û dixwaze bi başî fêrî hunera mûzîkê bibe. Herî zêde jî ji stranên Leona Lewis û Hana Montena hez dike. Henar di derbarê bihîstina stranên kurdî de wiha dibêje: "Ez gohdariya 'Merwe' dikim; strana 'Ey Şîrinê' pir xweş e." Em jê daxwaz dikin da ku paragrafek jî wê stranê ji me re bêje, bi rewanî û kurdiyek xweş ew distire.

Henar ne bi xwe tenê hatiye naskirin, herwiha malbata wê jî pê re hat naskirin. Niha li ser kolanan gelek kes silavan li bavê wê jî dikin. Dema bavê wê li kolanên Mannheimê dimeşe, jinek ji nêz ve silav li Henarê dike, otomûbîlek radiweste û silav li bavê Henarê dike û xweşhaliya xwe jê re diyar dike.

Bavê Henar, Hesen Mewlûdî di derbarê tevlîbûna keça xwe ya ji bo bernameya televizyona RTL de wiha axifî: "Henar ji zarokatî ve bi dengê bilind stran digot. Gelek caran peyvên xelet digot, lê awazên wê xweş digot. Dema sala derbazbûyî reklam ji bo bernamya RTL Tv dihat kirin, birayê Henarê paragrafeka stranekê ji televizyonê re rêkir. Wan jî piştî demekê têkilî li gel me çêkirin û piştî ceribandinê, wergirtin."

Derbarê alîkariya Henar a ji aliyê bav û dayika wê ve, Hesen Mewlud wiha dibêje: "Me jê re du mamostayên taybet girtibûn. Ne tenê ez, dayika wê bira û xwişkên wê jî piştgiriyê dikin." Herwiha Mewlûd xwest ku zarokên kurd çav li Henar bikin û ji bo nasîna netewa kurd, bibin pêşeng.

Henar ji me re hinekê li ser jiyana xwe ya taybet axivî û got: "Ji xwarinên spagêtî û chipse hez dike." Henar di saet 21:00'an de (saetek ji demê razana zarokan derengtir) radize; ji ber vê bi kenî ve got: "Dayika min sibehan bi zorê min ji xew radike."

Henar di derbarê axaftina rojane de ji wiha dibêje: "Bi kurdî û almanî diaxifim. Eger ez peyvek bi kurdî nezanibim û ji min re neyê gotin, yekcarî ji bavê xwe pirs dikim."

